BasNûçe
HERDEM RASTÎ
ISSN 2148-5305
9 772148 530008
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 116 29 Tebax - 04 Îlon 2016 basnuce.com



## Li şopa hunermendê mezin
R13

### Helwdana çareseriyê ya Barzanî

# Ji bo aştiyê pengaveke din



Geşedanên li Rojhilata Navîn mohra xwe li serdana Serokê RHK'ê Barzanî ya Tirkiyê da. Tevî ku rayedarên hikûmetê berovajî wê biaxivin jî, tê ragihandin ku destpêkirina proseyekî aştiyê yek ji mijarên sereke ya hevdîtinên Barzanî bû. Serokê RHK'ê li Enqerê derbarê girîngiya proseya aştiyê got; "Ji bo çareseriyê pêdivî bi dem û xebatek xurt heye."

Herwiha li gor agahiyan di meha tebaxê de Musteşarê Ewlekariyê li İmaralı'yê bi Öcalanê ku ji Avrêla 2015'an vir ve pêwendiya wî ya bi derve re hatiye qûtkirin, hevdîtinek pêk aniye. 'Deklarasyona dîrokî' ya KCK'ê ku ji bo bo proseyek nû merc danayne û 'banga agirbestê' ku wê ji aliyê HDP'ê ve di 31'ê Tebaxê de li Amedê bê kirin, geşedanan hewldana aştiyê piştrast dikin.

Li aliyê din tê ragihandin ku her çiqas geşedanên li Rojava di rewşa navbera PKK û TC'ê de tansiyonê bilind bike jî, ne surprîz in. Li gor angaştan Operasyona Cerablûsê di encama civîna HSD, DYA û rayedarên tirk a ku di bin çavdêriya Fermandarê CENTCOM'ê General Votel de li Kobanê û İncirlikê di meha Nîsanê de pêk hat de, rûdaye.

R02-3-4



### Rojnameger Tariq Karêzy:
## Barzanî bo navbeynkariya aştiyê amade ye

"Mesûd Barzanî siyasetmedarek e ku di asta herêmî û navdewletî de pêbawer e. Rastbîn û aştîxwaz e. Eger dewleta Tirkiye û PKK ji siyaset û kesayeta Barzanî sûdê werbigirin dê gelekî baş be. Em niha xelkê Bakûr dibînin tevî ku şerê xendeqan jî hate kirin lê meyla wan zêdetir ber bi aştiyê ve ye. "

R08-9

## Firad bû sînorê nakokiyan

Şerê navxweyî yê Sûriyê ku ji Adara 2011'an heta niha bi awayekî dijwar berdewam dike, piştî mudaxeleya Tirkiyê ya Cerablûsê ber bi aliyekî din ve diçe. Piştî destpêka vî şerê dijwar hêzên navdewletî û herêmî her yek li gor berjewendiyên xwe beşdarî vî gerembolê bûn û bi vî awayî Sûrî bû xaka ku dewletên sereke yên cîhanê bi rêya rêxistinên ne dewlet şerê hevûdû dikin.

R06-7

R05
## Bo Mûsilê roj tên hejmartin

R15
Nûrî Dêrsimî
## Mêrxasek bi bihaya 4000 zêran

# Ji bo aştiyê pengaveke din

M. Salih Batırhan - Dilan Almaz - M.Emin Kan - Ahmet Özyeter



Enqere di dawiya meha Tebaxê de bû qada dîpomasiyeke tijî ya ku kêşeyên xitimî yên Rojhilata Navîn dihatin niqaşkirin. Herdu navên ku ne tenê çarenûsa Tirkiye û Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK), wê çarenûsa herêmê bigûherin Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û Cîgirê Serokê DYA'yê Joe Biden li pey hev hatin Enqerê.

Hat ragihandin ku di ajandaya Barzanî de Proseya Çareseriyê, Operasyona Mûsilê, referandûma serxwebûnê û şerê li dijî DAIŞ'ê cî girtin. Gotinên Barzanî yên 'li herêmê wê guherînên mezin çêbibin' balkişand. Barzanî herwiha li ser girîngiya proseya çareseriyê jî sekinî û gotina wî ya "ji bo çareseriyê pêdivî bi dem û xebatek xurt heye" bû sedema şîroveyên ku piştî demekê hêviya aştiya ku têkçûye, wê dîsa zînde bibe.

Di hevdîtinên Cîgirê Serokê DYA'yê Joe Biden de ku piştî Barzanî gihişt Enqerê de mijarên Sûriye, hewlana derbe ya leşkerî û radestkirina Fethullah Gülen derketin pêş û herwiha gotinên Barzanî yên "Guherînên mezin wê li herêmê pêk werin" hatin niqaşkirin û şîrovekirin. Ev geşedan proseya çareseriyê û Operasyona Mûsilê nîşan didin û rola Barzanî ya di van proseyan de hat nirxandin.

### "Ji bo Proseya Çareseriyê pêdivî bi dem heye"

Geşedanên li Rojhilata Navîn mohra xwe li serdana Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî ya Tirkiyê ku hefteya borî pêk hat de, da. Barzanî ku beriya vexwedina Tirkiyê, bi fermî ji aliyê Îranê ve hat vexwendin, piştî ku serdana xwe ya Tirkiyê pêkanî, derbasî Ewropayê bû.

Tê destnîşankirin ku di ajandaya Barzanî ya hevdîtinên dîplomatîk de referandûma serxwebûnê ku tê çaverêkirin di Cotmehê de pêk were û Operasyona Mûsilê weke du mijarên sereke hebûne.

Di serdana Barzanî ya Enqerê de ji bilî van herdu mijaran, tê ragihandin mijareke din a girîng jî destpêkirina Proseya Çareseriyê bû.

Tê ragihandin Barzanî ku beriya ji Enqerê veqete bi gotinên xwe yên "Ji bo çarereseriyê pêdivî bi demê heye" û "li herêmê guherînên mezin di rê de ne" geşedanên nû wê li herêmê pêk werin nîşan da, ji bo rawestandina şer rizamendiya PKK û TC'ê wergirtiye û di proseya nû de dê kêmasî û zaafên ceribandina berê li ber çav bigire.

Li aliyê din tê diyarkirin ku siyaseta sereke ya kurd di pêşengiya HDP'ê de ji bo destpêkirina proseyekî nû û bêdengbûna çekan, dê di 31'ê Tebaxê de li Amedê 'banga agirbestê' li herdu aliyan bike. Herwiha tê ragihandin ku banga vegera diyalogê ku bi boneya 1'ê Îlonê Roja Aştiyê ya Cîhanê pêk tê, ne bêyî agahiyên Öcalan e. Rayedarên HDP'ê li ser vê civînê radigihînin ku 'Civîn wê bi helkefta Roja Aştiyê ya Cîhanê hemleyek cîddî 'be. Herwiha tê gotin ku ev hewldan ji aliyê Qendîlê ve hatiye pesendkirin. Tê pêşbînikirin ku Qendîl wê bêyî merc pabendî banga HDP'ê bibe û wê 'agirbestê' îlan bike û bi vî awayî helwesta xwe eşkere bike.

### Öcalan ji proseyê agahdar e!

Tê îddîakirin ku Öcalan ku ji Avrêla 2015'an û vir ve hevdîtinên wî yên bi şanda HDP'ê, parêzer û malbata wî re hatine qûtkirin, bi rayedarên pilenizim yê MÎT'ê re hevdîtinên xwe berdewam kirine û di meha Tebaxê de cara yekem di asta Musteşarê Ewlekariyê de bi şanda dewletê re hevdîtinek pêkaniye. Tê ragihandin ku di vê hevdîtinê de Öcalan û dewletê li ser şêweyekî cuda yê proseyekî sekinandina şer axivîne. Herwiha tê diyarkirin ku piştî vê hevdîtina ku naveroka wê belav nebû şandeke HDP'ê çû Qendîlê û li ser vê ser vê mijarê gotûbêj hatin kirin.

Tê îddîakirin Barzanî beriya serdana xwe ya Enqerê bi rayedarên PKK'ê re di nav pêwendiyê de bû û ji PKK'ê daxwaz kir ku ji bo proseyekî nû bi biryar û zelal bin. Meha borî jî Hevşaredarê Mêrdînê Ahmet Türk û Parlamenterê HDP'ê Dengir Mir Mehmet Fırat serdana Hewlêrê kiribûn û ji Barzanî daxwaz kiribûn ku bo destpêkirina proseyekî nû navbeynkariyê bike.

Parlamenterê AKP'ê Galip Ensarioğlu ku di serdana Barzanî ya bo meclîsê de li gel bû, li ser hevdîtinên di navbeyna aliyan got; "Serokkomar Erdoğan helwesteke siyasî ya ku erdnigariya kurdî hemû digire nav xwe nîşan da. Lêbelê mixatab şaş bû û li ser vê yekê ya pêwîst hat kirin. Di vî alî de Barzanî mixtabak rast e. Siyasetmedarekî ku li ser soza xwe disekine. Gûherîna li Mûsilê, li Sûriyê bo vebûna qadê dê serdemek nû bide destpêkirin." Ev gotinên mebûsê AKP'ê nîşaneyên guherînekê di demek nêz de di siyaseta tirk de radixîne ber çavan.

Li hêla din di derbarê çûna Barzanî bo MÎT'ê di serdana xwe ya Enqerê de, tê îddîakirin ku bi Öcalan re hevdîtinek pêk aniye, lêbelê alî ji teyîtkirina vê yekê xwe didin paş. 'Deklarasyona dîrokî' ya KCK'ê ku hefteya borî weşand û ji bilî rakirina tecrîda li ser Öcalan û biryarbûna hikûmetê li ser çareseriyê tu merc nedihewand jî van geşedanên dawîn piştrast dike. Di deklarasyona KCK'ê de ku digot; 'Hin rêxistinên Başûrî yên dost ji bo proseyekî nû ji me daxwazan dikin', amaje bi rola Barzanî û PDK'ê dike.

Di vê dema ku çav li civîna HDP'ê ya Amedê ya 31'ê Tebaxê de ne, bendewariyek heye ku proseyeke nû destpê bike. Lê belê diyar e ev prose wê heyamekê veşartî were birêvebirin û wê di şêweyekî cuda de be.

### Hikûmet hişk xuya dike!

Helwesta hikûmetê ya ku destpêkirina proseyeke nû red dike, helwesta Serokkomar Erdoğan û Serokwezîr Yıldırım ku vekişana ji Tirkiyê weke merc datînin ber PKK'ê wek taktîk tên şîrovekirin.

Herwiha dewamkirina helwesta tund ya hikûmetê û çalakiyên PKK'ê wek beriya vegera ser masê 'bihêzkirina kertan' tên nirxandin. Tê îddîakirin ku hikûmetê li hemberî tasfîyekirina kadroyên şerxwaz yên dewletê ku Cemaatî bûn, tasfîyekirina radîkalên nav KCK û HDP'ê jî dixwaze. Ji ber wê yekê tê çaverêkirin ku Öcalan di pêşerojê de radîkalên nav siyaseta kurd tasfiye bike.

Li aliyê din tê ragihandin ku her çiqas rewş û geşedanên li Rojava di rewşa navbera PKK û TC'ê de tansiyonê bilind bike jî, ev geşedanên nû ne surprîz in û Operasyona Cerablûsê encama civîna Hêzên Sûriya Demokratîk (HSD), DYA û rayedarên tirk a ku di bin çavdêriya Fermandarê CENTCOM'ê General Joseph Votel de li Kobanê û Încirlikê di meha Nîsanê de pêk hat de encam daye. Rojnameya BasNûçe'yê li ser vê mijarê di hema Nîsanê de çendin nûçeyan belavkiribûn. Di hevdîtinan de mercên nêzîkbûna PKK û TC'ê jî hatibûn axaftin û herdu aliyan niyeteke baş nîşan dabûn, lêbelê di vê mijarê de pêşveçûnek pêk nehatibû.

Piştî hevdîtinên Barzanî yên li Enqerê li ser mijara Proseya Çareseriyê daxuyaniyek fermî nehat belavkirin û daxuyaniya Binali Yıldırım a "Di rojeva me de Proseya Çareseriyê tune ye" û daxuyaniya Barzanî ya "Ez di mijara çareseriyê de bi hêvî me, lêbelê di ji ber şaşiyên qonaxa borî pêdivî bi dem heye" nîşan didin ku prose wê heyamekê veşartî birêve biçe û dema ku pêşde çû û kemilî, wê bê eşkere kirin.

Herwiha Cîgirê Serokê DYA'yê Joe Biden jî di vê mijarê de ji aliyan xwestiye ku li Rojava neyên hemberî hev û kêşeyên ku li ser lihevkirinek pêk nehatiye bi demê re çareser bikin. Li gor dîplomatan Biden li Enqerê bi Barzanî re jî hevdîtinek nehênî pêkani ye.

Siyasetmedar û akademîsyenên ku radigihînin geşedanên li herêmê wê ji bo çareseriya Meseleya Kurd jî riya proseyek nû vekin û ev nirxandina xwe li ser van gotinên Barzanî kirin: "Proseya Çareseriyê li Tirkiyê mijarek girîng e. Lêbelê pêdivî bi demê heye. Em ne bêhêvî ne, hewldanên me wê berdewam bikin, lê mixabin di heyama borî de gelek bûyerên nebaş qewimîn. Em hêvî dikin ku rojekî proseya çareseriyê dîsa destpê bike."

# Helwdana çareseriyê ya Barzanî

Akademîsyen, rojnameger, siyasetmedar û nîvîskarên Tirkiyê derbarê serdana Serokê Rêvebiriya Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî û hewldanên ji nu ve vejîna proseya çareseriyê ji BasNûçe'yê re axifîn.



**Siyasetmedar Kemal Burkay: PKK dev ji çekan berde ew ê di berjewendiya kurdan da be**

Birêz Barzanî jî elbet ji bo ku salek berê pêvajoya çareseriyê qediya û li Bakurê Kurdistanê destpêkirina şer ne dilxweş e. Sala borî dema hat ji bo ku şer û pevçûna bide sekinandin ket nava hewldanan lê ji aliyê HDP'ê ve li dijî wî Figen Yüksekdağ derxistin û pê dan gotin ku "destêwerdana navxweyî nekin". Piştî şer û pevçûnên xendekan, wêranbûna bajarên kurdan, bi hezaran qurbanî û bi sedhezaran koçberiya Hikûmetê çend caran anî ziman ku bi PKK/HDP'yê re dest bi pêvajoyeke wiha nakin. Anha di ser de Tirkiye ji bo hewldanên PYD'ê ku dixwaze korîdorek kurdan veke asteng bike yekîniyên xwe yên leşkerî derbasî sînor kiriye û careke din jî PKK'ê çalekiyên xwe zêde kirine. Hikûmet eger ku bixwaze rageşiyê kêm bike û careke din hewl bide PKK'ê dest ji çekan berde ew dikare bi PKK'ê re hevdîtinan bike. Ev zelal e ku şerê PKK'ê li dar dixe ji wêrankirina Kurdistanê pê ve û ji gelê kurd re ji bilî êşê tiştek nake. Di serî de çekberdana PKK'ê ji bo berjewendiya kurdan e. Hevdîtina Mesûd Barzanî ji hewldana navbeynkariyê zêdetir, li ser geşedanên herêmê bû. Vê hevdîtinê hat dema Operasyona Cerablûsê û ji wê sedemê aktorên ku li herêmê bi bandor in re gelek hevdîtin hatin ki-rin. Dibe ku di vê hevdîtinê de ji bo pêşeroja Sûriyê ku aştî çêbibe wê çawa be û gavên ku Rêveberiya RHK'ê dixwaze ji bo serxwebûnê bavêje hatibin axaftin. Axaftina birêz Barzanî ya " wê guherînên mezin çêbibin" jî di wê wateyê de divê bê şîrovekirin.

**Şêvirmendê MÎT'ê yê berê Cevat Öneş: PKK, HDP'ê asteng dike**

Di vê demê de hatina Barzanî ya Tirkiyeyê nîşan dide ku ew aktorekî girîng e. Helbet wê ji nû ve destpêkirin pêvajoya çareseriyê de û xistina jiyanê de wê her dem alikariyên Mesûd Barzanî hebin. Di nav wan geşedanan de, îhtimala mijarên operasyonên li dijî DAIŞ'ê, geşedanên hêla PYD'ê û Operasyonên Raqqa û Mûsilê jî hatibin axaftinê mezin dibînim. Ji bo ku pêvajoya çareseriyê hê ji nû ve dest pê bike divê PKK'ê dest ji çaleki-yên xwe yên ku zêde kiriye berde. Bi çalekiyên xwe di pêvajoya çareseriyê de ji HDP'ê re dibe asteng. Çalekiyên PKK'ê yên demê dawiyê ku di asta herî bilind de dikin wek stratejiyek xelet û geşedanên li dijî kurdan dibînim.

**Şêwirmendê berê yê Serokwezîr, Etyen Mahçupyan: Yekîtiya bi DYA'ê re deriyê pêvajoya çareseriyê vedike**

Hem li nav Tirkiyeyê û hem jî li dervayê Tirkiyeyê wê guherîn çêbibin. Helbet wê aktorên girîng bixwazin gavên ji aliyê aştî, aramî û îstîkrariyê de bavêjin. Wê aktorên ku giraniya xwe li gor qeweta bazariya xwe bidin û ew ê jî hinek pêvajoyê bibe û bîne. Ez bawer im ku di sala 2017'an de hêdî hêdî wê zelaliyek çêbibe û ew dê li ser Tirkiye jî tesîrê bike. Pergala nû ji bo siberoja RHK'ê dê projeyên demdirêj bide fikirandin. Li wê derê wê serxwebûn çê bibe yan nebe ew mijareke din e. Li wê derê aktoreke heye. Lewra pêywendiyên Tirkiye û Başûrê Kurdistanê jî gorî min wê li ser bigeheke saxlem bisekine. Di bin ronahiya wê de ez difikirim ku pirsgirêka kurd ya Tirkiyeyê jî hê ji nû ve bigrin dest. Her çiqas Tirkiye bi DYA'yê re tevbigere ew ê pêşiya pêvajoya çareseriyê vebibe. Divê hê zelal be, kes xwe nayê aveke ku nayê zanîn. Lewra ez bawer nakim hema di careke de pêvajoya çareseriyê dest pê bike. Di mijara Mûsilê de jî dibe ku biryara pevgerînê hatibe dayîn û pêşerojeke bi hevre dibe texeyûl kiribin.

**Rojnameger Mahmut Övür: Tirkiye li navbeynkariya Barzanî bi germî dinêre**

Dema ku mirov li xeta HDP û PKK'ê dinhêre hê têkiliya wan ya bi çekan re tû guherîn çênebûye ji wê sedemê îhtîmala pêvajoyek çareseriyê dest pê bike pir qels e. Divê xeta PKK-HDP'ê navberê bikin nava xwe û PKK jî dest ji çekan berde. Tirkiye gelek tecrûbeyên cidî dît û piştî wan tecrûbeyan îhtîmala ku Tirkiye careke din bixwaze proseya çareseriyê biceribîne pir qels e. Piştî wê demê divê PKK'ê li ser çekan biryareke misoger û dîrokî bide wê tiştê herî baş ev be û divê HDP'ê jî biryara siyaseta bê tundiyê bide. Anha di vê pêvajoyê de Tirkiye wê navbeynkariya birêz Barzanî germ binêre, lê ez di xaleke de dibêjim wê Barzanî navbeynkariyê neke. Ji wê mabestê ez niha destpêkiri-na proseya çareseriyê pir rastîbîn nabînim. Ango ez heta ku çek neyên berdan pêva-joyek ku dest pê bike pir qels dibînim. Li ser Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û li Tirkiyeyê sekna ku Erdoğan têde ye re ji hûndir û derve de gelek dorpêç hene. Me li RHK'ê û Tirkiyeyê versiyonên wan ê cûda cûda dît. Ji bo ku wan herdû aktorên herêmê ji dewrê derxin her tiştî kirin. Em di demê dîrokî de derbas dibin. Ez bawerim ku daxuyanîya brêz Barzanî ku "wê tiştên baş çêbibin" jî wek destpêkirina pêvajoyek nû tê fêmkirin.

**Parlementerê HDP'ê Mithat Sancar: Em dixwazin di 1'ê Îlonê de pêngava aştiyê çêbikin**

Qasî ku ez texmîn dikim birêz Barzanî li hevdîtinên xwe yên li Tirkiyeyê destpêkirina pêvajoya çareseriyê ne di nav mijara wan ya sereke de bûye. Ez bawer im ku aliyê Tirkiyê nexwestiye li ser wê mijarê biaxivin. Axaftina birêz Barzanî mutleqa li ser mijara destpêkirina pêvajoya çareseriyê jî hebûye. Lê hê di destê me de tiştek tune ku di hevdîtinê de pêvajoya çareseriyê berfireh hatiye axaftin. Qasî ku ez zanim mijara esasî ya hevdîtina Tirkiyeyê Operasyona Mûsilê bûye. Yanê wê di demeke nêz de li hembere DAIŞ'ê Operasyona Mûsilê çêbibe, ancax şert û mercên Musilê yên taybet hene. Li Mûsilê gelek gelên bîr û baweriyên wan cûda hene û bi hevre dijîn. Rêveberiya RHK'ê jî ji bo ku bi taybet li ser wan mijaran sekinîne û fikra wan jî wisa ye û ez fêm dikim ku bi Tirkiyeyê re jî di nav hewldanên lihevkirinê de ne. Ez dikarim bêjim ji hêla Barzanî û heyeta pê re Operasyona Cerablûsê bi xem nehatiyê pêşvazîkirin. Ew difikirin ku ev operasyon ji bilî Cerablûsê wê neçe ciheke din. Em 1'ilonê di Roja aşitî ya cîhanê de dixwazin pêngaveke aşitiyê çêbikin. Di 31'ê Tebaxê de bi tevlîbûna tevahiya hilbijartiyên partiya me, parlementer û serokê şaredaran em dê daxuyaniyek bidin.

**Parlementerê AKP'ê yê Kilisê Hilmi Dülger: Em bi serdana Barzanî şanaz bûn**

Em hez dikin bi hemû cîranên xwe re aram bijîn. Em bi serdana Barzanî şanaz bûn. Dijminî û şer mayînde nabe, li herêmê tiştê girîng dabînkirina aramiyê ye. Di vê çarçovê de hatina Barzanî erênî ye. Têkoşîna û hevkariya li dijî rêxistinên terorîst, ên ku welatên herêmê dikin gola xwînê, dê ji bo me hemûyan bi xêr be. Hêj zû ye ku em bibêjin Bar-zanî dê bibe navbeynkarê çareseriyê. Jixwe partiya me di vê çarçovê de nepeyivî. Lê ez careke din dibêjim ku, ji bo ewlehî û aramiya herêmê çi pêwîst be em ê bikin.

**Siyasetmedar Elî Ewnî: Eger alî ji bo çareseriyê hazir bin, çi ji destê Barzanî were dê bike**

Kêşeya kurd kêşeyeke wisa nîne ku bi çekan çareser bibe. Tevgera kurdî ya millî tevgereke aştîxwaz e. Ji bo mereqa xwe em çekan hilnadin; Lê dagirkerên me, me mecbûr dihêlin. Ji bo keyfa xwe em şerê çekdariyê nakin. Serok Barzanî hemû gavan baweriya xwe bi vê yekê aniye û bûye alîgirê demokrasî û aştiyê. Di navbera PKK'ê û Tirkiyê de proseya çareseriyê hebû. Di nava her duyan de bi salan e gotûbej dewam dike û ew ji saetekî şer çêtir e. Herdu alî jî bûne terefdarê şer. Hewce nebû ku carekî din şer bikin. Di proseya dawiyê de Cizîr, Gever, Sûr, Silopiya wêran bûn. Bi hezaran mirov koçî metropolan kirine. Bi sedan insan û ciwanên me mirin. Heke herdu alî ji bo ça-reseriyê bi biryar bin, çi ji destê Barzanî were wê bike. Em kêşeyên xwe yên bi Bexda re dixwazin bi gotûbêjan çareser bikin.

**Rawêjkarê Dîwana Serokatiya Rêveberiya RHK'ê Fûad Husên: Civîna me li ser hevkariyê bû**

Em bi Serok Barzanî re gelekî civiyan. Me bi Tirkiyê re biryar da ku hevkariya xwe bidomînin. Me li ser têkoşîna li dijî DAIŞ'ê, Mûsil û hevkariya her du welatan gotûbêj kir. Ji bilî vê yeke ez nikarim tiştekî bibêjim. Serdanekî girîng bû.

**Rojnameger Arif Qurbanî: Kurdên Bakur ji serpêhatiyên Barzanî îstîfade dikin**

Bêguman serdana Barzanî jî bo Tirkiyê geleki girîng e. Proseya çareseriyê hat gotûbêjkirin. Lê pêşniyariyeke min ji kurdan re heye. Divê yekîtiya xwe pêk bînin; Lê hêj ev yeke dabîn nekirine. Pêşiya her tiştî divê kurd ji kêşeyên xwe re çareyan bibînin. Piştî kêşeyên xwe çareser kirin divê êdî biaxivin û danûstandina bikin. Heya kurd di nava xwe de yekdeng û yekreng nebin, ji çar perçê Kurdistanê jî ji kêşeyên xwe re çar-eyekê nabînin.

Mesûd Barzanî ji bo hemû kurdan şexsiyetekî girîng e û di nava kurdên Bakur de pêşengekî giran e. Siyasetmedarên Bakur ji serpêhatiyên Barzanî yên siyasî îstîfade dikin. Hêvîdar im ku ji bo proseya çareseriyê çi pêwîst be wê bê kirin. Kêşeyên Kurdista-na Başûr çawa hatibin dermankirin, ên Bakur jî bi wî rengî divê çareser bibin.

**Serokê PDK-T Mehmet Emîn Kardaş: Em dixwazin Barzanî navbeynkariyê bike**

Serokê Rêveberiya RHK'ê Mesûd Barzanî serdana Tirkiyeyê kir û ev hevdîtin di nav du dewletan da çêbû. Bi hatina xwe bi Serokkomar, Serokwezîr û Li meclîsa Tirkiyeyê he-vdîtin kirin. Mesûd Barzanî jî, em hemû kurd jî dixwazin li Bakurê Kurdistanê aştî çêbibe. Ez bi xwe ne bawer im bi wî rengî aştî çêbibe. Aştî di neqeba kî de çêdibe? ji ber çi wê çêbibe? Eger aştî di navbera PKK û dewletê de çêbibe ew aştiya dev ji şer berdin li hev bên. Lê meseleya ku dibêjin pirsgirêka kurd re tu çareserî nîne. Heta ku kurd bibin dewlet û bibin xwediyê mafê xwe yê netewî bi dest nexin doza netewa kurd naqede.

Aştî di navbera du hêzan de wê çêbibe, lê bingeha wan însanan dê çava were çêkirin. Ev kas kuştin, Penaberî û her roj bi dehan mirov dimrin. Serokê du hêzan li hev werin jî di nav wan herdu gelan de wê kîn û nefreta di dilê wan de heye zûbizû naqede. Dewlet divê dest ji meseleya PKK'ê berde bi kurdan re li hev were. Mafê neteweyê kurd heye, doza axa xwe, doza dewletbûnê, doza çanda xwe û doza ziman dema em dixwazin ne ku em dibêjin bi çek û şer em ê bi dest bixin. Em dibêjin ser mafê dinyayê reva û xwezayî mafê me ye em dema doza wî mafî dikin em ji dinyayê şerm nakin ew mafeke reva ye. aştî ne pirsgirêka kurd e, aştî di nav du hêzan de dibe û ev şer anha di nav PKK'ê û dewletê de heye.

**Serokê PSK'ê Mesut Tek: Ji bo proseyê dem lazim e**

Her hevdîtin û goftugoyên herêma Kurdistanê bi dewletên cîranan re em baş dinirxînin û ev tiştekî gelek baş e û divê ev herdem hebe. Heta ku Kurdistan hevpar nebe û cîranên me ev bin, em mecbûr in bi wan re bidin û bistînin. Ne em ne jî ew nikarin cihê xwe bi guherînin ji wê sedemê çêtir e pêwendiya dostane di navbera me de hebe û em wek du dost her hewlên hatina rêveberê RHK'ê ji bo Tirkiyeyê tişteke başe û em piştgiriya wan tiştan dikin.

Serokê Herêmê Mesûd Barzanî got ku me li ser pêvajoya çareseriyê jî goftugo kiriye. Kak Mesûd Barzanî û Mam Celal bi salan e dixwazin pirsa kurdên Kurdistana Bakur bi aştî were çareserkirin û ji bo wê armancê jî gelek hewl dane ketine navbeyna dewleta Tirkiye û PKK'ê. Gelek caran jî bi vê hewldana xwe ser ketine. Lêbelê divê ji bîra me neçe ku ew tenê hewldanê navbeynkariyê ye. Divê herdu alî dewlet jî, PKK jî bi rastî amade bibin ku vê pirsgirêkê bi rêya diyalogê û bi rêyeke aştiyane bê çareserkirinê. Daxuyaniyên herdu aliyan jî mirova dike nav fikaran û nahêle mirov bi hêvî be û ji aliyê çareseriyê de dilxweş be.

**Serokê PAK'ê Mustafa Özçelik: Barzanî ji bo proseyê dikare rol bilîze**

Meseleya pêwendiya Tirkiyeyê û Başûrê Kurdistanê divê mirov wek têkiliyên di navbe-ra du dewletan de lê binêre û li ser wî esasî jî hinek tişt li ser rêya dîplewmasiyê pêk tên. Em niha naveroka hevdîtinê zêde nizanin lê birêz Mesûd Barzanî zêdetir ji bo pewen-diyên herdu aliyan li wê derê bû. Niha ji bo proseya çareseriyê Serok Barzanî dema ewil jî rolek mezin lîstibû. Dîsa jî eger proseyek dest pê bike wê rolek esasî bilîze. Tiştê ku niha em dibînin, bi wî halî, ne dewlet û ne jî PKK ti rêyan nadin ji bo proseya çareseriyê dest pê bike. Proseya çareseriyê jî em vekirî dibêjin cara yekem bi navbera PKK û dewletê de çêbû lê ew ne proseya çareseriyê bû. Ji bo meseleya kurd û Kurdistanê ti ber-name û lihevkirinek tunebû. 3 / 4 xalên proseya çareseriyê hene yek bila şer raweste, du divê hemû partiyên Bakurê Kurdistanê beşdarî wê pêvajoyê bibin. Sê divê garantorên navneteweyî beşdare vê pêvajoyê bibin. Çar, divê bernameya ku niha kurd dixwazin pêk bê û bernameya çareseriya pirsa kurd û Kurdistanê jî bi xwe re tarîf bike.

**Serokê Hak-Par'ê Refik Karakoç: Banga Barzanî wê tesîrê li Tirkiyê bike**

Pêwendiyên Başûrê Kurdistanê û Tirkiye divê hîn baştir bûna ew jî kêmasiya Hikûmeta Tirkiyeyê bû. Em ji kîjan aliyê de binêrin wek, aborî, cîrantî, hemwelatiyê Başûrê Kur-distanê perçeyeke Kurdistana Tirkiyeyê ye. Têkiliya ku îro danîne berê danîbana wê Tirkiye feydeyek mezin bidîta. Dereng man lê dîsa jî pêwendiyên îro baş in. Hatina Ser-okê RHK'ê Mesûd Barzanî ji bo Tirkiye pir girîng e. Ji bo prisgirêkên Rojhilata Navîn pir girîng e. Têkilya RHK'ê û Tirkiye çiqas dostane be wê tekez feydeya wê bigihêje gelê me jî. Mesûd Barzanî ku got hêviyên min hene ew tiştek baş e. Eger Tirkiye dixwaze pirsgirêka kurd çareser bike wê ji bo hemû gelan tiştê baş derxe hole. Banga birêz Mesûd Barzanî dê tesîrek li ser Tirkiyê bike.

**Serokê PDK Bakur Sertaç Bucak: Barzanî hêviyên xwe anîn ziman**

Hatina Cenabê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ez bawer im armanca ziyareta wî serkeftî bû. Ji ber ku di nav medyayê de gelek qêmet dan hatina wî. Mînak gotin du mêvanên girîng tên Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û Cîgirê Serokê Amerîkayê Joe Baiden bi hev re telefuz kirin ew tişteke gelekî baş bû.

Hevdîtina Cenabê Barzanî di asteke herî bilind de bû, li gel Serokkomar, Serokwezîr û Serokê Meclîsê çû weke nûnerekî fermî ew jî çû hevdîtina wî kir. Niha beriya hatina Mesûd Barzanî çar tişt hatibûn gotin. Ew jî goftugo li ser pirsên herêmê, Serê DAIŞ û Operasyona Mûsilê û meseleya çareseriya pêvajoya aştiyê bûn. Serokê RHK'ê hêviya xwe ji bo meseleya çareseriyê diyar kir. Mesele wisa ye ku ew tişt pêşve bê birin. Ez hat-ina wî hem ji aliyê siyasî û hem jî di aliyê Kurdistanê de serkeftî dinirxînim û hebûna ala Kurdistanê êdî nîşan dide ku Kurdistan li Rojhilata Navîn û cîhanê weke herêmeke fer-mî tê naskirin.

**Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek: Proseya çareseriyê di rojeva mê de ye**

Mijara hevdîtina Mesûd Barzanî û berpirsyarê Hikûmeta Tirkiye û Komara Tirkiyê meseleya Mûsilê hebû, meseleya ji bo şerê di navbera PKK'ê û dewletê de pêvajoya aştiyê dest pê bike û ew mijarê wek mîsyonek dan ser milê Mesûd Barzanî. Eger birêz Mesûd Barzanî di pirsgirêka Bakurê Kurdistanê de wek navbeynkarê di navbera dewleta Tirkiye û PKK'ê de be wê baş be. Meseleya Mûsilê wê çawa be û mijara Cera-blûsê jî bi Mesûd Barzanî re danîn pêşiya xwe û gotibû wê tiştên baş û girîng çêbibin.

Niha birêz Mesûd Barzanî li Enqereyê mesajek da û got ez bi hêvî me û di heman demê de jî Serokwezîr Binali Yıldırım peyam da û got di rojeva me de tişteke wek çareseriyê tune. Me berevajiyê wî fêm kir. Li gor min di pêvajoya wan de çareserî heye. Lê mese-leya Rojava wê çawa here ew girîng e. Çareseriya Bakur girêdayê Rojava ye. Tesîra Rojava hem li Bakur hem jî li Başûr dibe.




**Siyasetmedar Osman Öcalan: Pêngava Barzanî bi dilê Öcalan e**

Di meşandina pêvajoyê de xizmeta Serokê Rêveberiya RHK'ê (RHK) Mesûd Barzanî û Nêçîrvan Barzanî girîng bû. Pêvajo ku bi ser neketibe jî wan her du serokê kurd Mesûd Barzanî û Nêçîrvan Barzanî wan rola xwe lîst. Mesûd Barzanî dixwest bê navber dewam bibe. Sala derbasbûyî di navbera Erdoğan û Davutoğlu de nîqaş kiribûn. Lê wan gotibû em amade nînin ji bo pêva-joyek nû berdewam bikin. Ji bo wê jî serok Barzanî israr nekiribû. Carek din proseya çareseriyê Serok barzanî danibû. Wê carê jî rayedarê Tirkiyeyê gazî Barzanî kirin. Sala derbasbûyî gelek tişt hatin gu-hertin. Tiştê ku em zanin yê herî dawî derbeya leşkerî bû. Derbeya leşkerî weke jidayîkbûnekê bû jî bo Tirkiyeyê, ji wê rojê pê ve hemû tişt hatin gu-hertin.

Di navbera PDK û PKK'ê de ji bo hemû pirsgirêkan ez bawer im di-yalogeke berdewam dike. Tu caran diyalog qut nebûye. Gelek kes dixwazin şerekî navxweyî durist bikin. Herdu alî jî bi diyalogê pêşiyê wî digrin. Pêwîstiya herdu aliyan jî bi proseya aşitiyê heye. Li Tirkiyeyê hewldana derbeyê bû û ew hewldan niha di bin metirsiyeke mezin de ye. Gelek hêz him di hundir de him jî li derve dixwazin wê desthilatiyê birûxînin û têk bibin. Ji aliyê din ve yên ku dixwazin tevgera kurd jî tasfiye bikin kêm nînin. Gelek hêzên herêmê dixwazin tevgera kurd jî têk bibin. Em dizanin dixwazin serokatiya herêmê birûxînin. Dîsa li Bakur ew şerên kolanan bi tehrîkê derve bû. Tesfiyeyek li dijî komara Tirkiye û li dijî neteweya kurd heye. Îro li meydanê serokê Rêveberiya RHK'ê Mesûd Barzanî û Sero-kwezîr Nêçîrvan Barzanî nûnertiya kurdan dike. Pêyvendiyên Serok Bar-zanî û Nêçîrvan Barzanî di hewldanan de ne ku pirsgirêkan çareser bikin. Ev diyaloga di navbera PDK û PKK'ê de di xizmeta projeya çareseriyê ji bona wî Barzanî xwe hê baştir amade kir û bi dengeke bilind li Enqereyê ew daxwazî anî ziman. Ez bawer dikim piştî wê daxwaza Mesûd Barzanî Enqere wê xwe amade bike û ji bo wî jî dem lazim e du sê mehan wê bigire. Bingeha nû ya çareseriyê hat danîn. Ew pêngava Serok Barzanî serkeftî qe-bûl dikim. Ew pratîkbûna wî jî zêde dirêj nake di dawiya payîzê de ez dibêjim carekî din ew proje wê dest **pê bike û wê carê wê serkeftî be.**

Qasî ku ez dizanim ji salên 90'ê vir de, Öcalan li fersendekê digere ku pirs-girêkan bi rêya siyasî çareser bike. Öcalan keseke şerxwaz nîne, ji şer zêde-tir dixwaze encamê jê bistîne. Ez bawer im ku Öcalan eger fersend were pêş wê biryara xwe ji aliyê siyasî ve bide xuyakirin. Öcalan amade ye ku ça-reseriya siyasî dest pê bike. Ji hemû kesan zêdetir dixwaze ku pêvajoyek wiha dest pê bike. Ez dikarim bêjim têkiliyek di navbera Mesûd Barzanî û Abdullah Öcalan de nîne. Lê danûstendineke rûhî heye di navbera seroka-tiya kurdan de. Pêngava Barzanî ez bawer im bi dilê Öcalan e.

Siwar Bedirxan

# Bo Mûsilê roj tên hejmartin



Di nava vê hefteyê de Serokê RHK'ê Barzanî serdana Tirkiyê û Yekîtiya Ewropayê kir. Tê gotin ku Serokê RHK'ê di van serdanan de bi rayedarên Tirkiyê û Ewropayî re Operasyona Mûsilê û referandûma serxwebûnê gotûbêj kiriye. Rayedarên RHK'ê aşkere kirin ku DAIŞ, li Mûsilê asê bûye û hemû rê li ber DAIŞ'ê hatine girtin.

Li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) û Iraqê êdî ji bo Operasyona Mûsilê roj tên hejmartin. Rayedarên Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) û Yekîtiya Ewropa (YE) yên ku serdana Serokê RHK'ê kiribûn, bi Barzanî re hûrgiliyên operasyonê û siberoja Mûsilê ya piştî DAIŞ'ê gotûbêj kiribûn. Piştre di bin fermandariya Barzanî de 8 hezar Peşmerge li Xazir û Guwerê êrişê çeperên DAIŞ'ê kiribûn. Du rojan piştî destpêkirina operasyonê, Peşmergeyan 112 gund ji û heremê rizgar kirin û 120 kîlometre kontrol kirin. Li gel vê yekê hêzên Pêşmerge bakur, rojava û rojhilatê Mûsilê kontrol kirin û hemû rêyên DAIŞ'ê ên hatinûçûnê birîbûn.

Herwiha li gel operasyonan Pêşmergeyan li Xazir û Guwerê, Artêşa Iraqê jî navçeya Geyara ku dikeve başûrê Mûsilê, ji DAIŞ'ê wergirt û ji başûr ve bajar dorpêç kir. Artêşa Iraqê jî navçeya başûrê Mûsilê Geyara ji destê DAIŞ'ê rizgar kir û DAIŞ'ê li Mûsilê heps kirine. Çavkaniyên li herêmê aşkera dikin ku Artêşa Iraqê, Rafîneya Geyarayê kontrol kiriye û DAIŞ paşve vedikişe.

Niha hêzên oparasyonel ji bo daxilê nav bajêr bibin, li benda fermana rayedaran e.

Li aliyê din DAIŞ'ê piştî şikesta li hember Pêşmergeyan hewl dide bi xwekujan êrîşî navendên emnî û sivîl bike. Dû xwekujên DAIŞ'ê ku êrişê qampa penaberên Mexmûrê kirin, hatin kuştin. Li gorî zanyariyên hatine bi dest xistin dû çekdarên DAIŞ'î bi dizî ketine sînorê Mexmûrê û xwe gehandine qampa penaberan û piştre yekî ji wan xwe teqandiye, yê di jî hatiye kuştin. Di êrişê de li kampê gerillayekî HPG'ê jî jiyana xwe ji dest daye. Asayîşê ji bo rêgiriya zêdetir li ber xwekujên DAIŞ'ê, tedbîrên ewlehiyê zêdetir kirine.

Li aliyê din Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di serdana xwe ya dawîn de bi rayedarên Tirkiyê û Ewropa re Operasyona Mûsilê gotûbêj kiriye. Rayedarekî ji RHK'ê aşkere dike ku DAIŞ li Mûsilê asê bûye û hemû rê li ber DAIŞ'ê hatine girtin. Li gorî agahiyên rayedarên Wezareta Pêşmerge ya RHK'ê dane BasNûçe'yê di ajandaya Serokê RHK'ê Barzanî de, yek ji xalên girîng Operasyona Mûsilê ye. Barzanî wê li gel rayedarên welatên ku serdana wan dike, şertên kurdan ya daxilbûna operasyonê û paşeroja heremê piştî rizgarkirinê binirxîne.

### General Gerdî: Pêşmerge wê hemû erdê me bistîne

Fermandarê Bereya Maxmûr-Guwerê General Ehmed Gerdî, tevgera Artêşa Iraqê ya başûrê Mûsilê û Operasyona Pêşmerge ya Mûsilê ji BasNûçeyê re nirxand. Gerdî aşkera kir ku meha Gulanê Artêşa Iraqê dest bi Operasyona Geyarayê kiriye û piştî şer û pevçûnên dijwar Artêşê, Geyara ji DAIŞ'ê rizgar kiriye. Gerdî diyar kir ku pêşdaçûna Artêşa Iraqê ya başûrê Mûsilê wan memnûn dike û piştî Artêşa Iraqê amade bibe wê operasyon destpê bike. Gerdî destnîşan kir ku Pêşmerge gelek serkeftî ye û di meha Îlonê dê wê ber bi Mûsilê ve tevgera leşkerî destpê bike.

Gerdî anî ziman ku Pêşmerge bi derbeyên mezin DAIŞ'ê lawaz kiriye û heta Pêşmerge hemû erdê kurdan kontrol dike wê li dijî DAIŞ'ê berxwe bide.

Li ser mijara serdana Barzanî ya Tirkiyê û YE'yê jî Gerdî wiha got: "Em dizanin ku Serok Barzanî bi rayedarên YE û Tirkiyê re li ser Operasyona Mûsilê axiviye. Îdarekirina Mûsilê ya piştî DAIŞ'ê û pêwendiyên bi Iraqê re rojeva Barzanî ye. Em hazir in fermanên Barzanî bi cih bînin."

### Dr. Kemal Kerkûkî: Em ê biryara serxwebûnê bidin ne dewlet

Li herema Kurdistanê niqaşên li ser rapirsiya referandûmê jî didomin. Berpirsê Polîtburoya Yekîtiya Niştimanî Kurdistan (YNK) Mela Bextiyar di nava hefteyê de îdîa kiribû ku di nav de DYA û Rûsya jî 28 welatên Rojavayî li dijî serxwebûna Kurdistanê ne. Rêvebirê YNK'ê Bextiyar wiha gotibû: "Ti belge, biryar an peymanekî DYA, Rûsya an dewletekî din ji bo serxwebûna Kurdistanê nîne. Van welat û 28 dewletên Rojavayî ji me û Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) re belgeyek şandin û alîgiriya xwe ji bo yekparçetiya Iraqê anîne ziman."

### "Îddiayên Mele Bextiyar ne rast in"

Endamê Polîtburoya PDK'ê Dr. Kemal Kerkûkî li ser vê mijarê ji BasNûçe'yê re axivî û angaştên Mela Bextiyar derewand. Dr. Kerkûkî rexne li Mele Bextiyar kir û got ku tu belgeyekî bi vî rengî nehatiye destê PDK'ê û yê ku biryara serxwebûna xwe bide miletê kurd e, ne dewletên biyanî ne. Kerkûkî anî ziman ku mafê çarenûsa xelkan di bin garantiya Netewên Yekbûyî de ye. Kerkûkî diyar kir ku biryara serxwebûnê di destê kurdan de ye û serxwebûn di serdana Barzanî ya Ewropayê de mijara sereke ye.

### Kêşeya nû ya YNK û Goranê, Walîtiya Silêmaniyê ye

Li aliyê din ji ber Walîtiya Silêmaniyê, di navbera YNK û Tevgera Goranê de aloziyekî nû derket. Li ser navê waliyê nû niqaş didomin. Di nava hefteyê de hat ragihandin ku walîtiya Silêmaniyê ji YNK'ê derbasî Goranê bûye. Li ser dewra walîtiyê hat zanîn ku hin endamên YNK'ê aciz bûne û ji YNK'ê îstîfa kirine.

Li gorî peymana 2014'an a YNK û Goranê wê walîtî ji YNK'ê derbasî destê Goranê bibe. Walîyê Silêmaniyê Ferîdûn Asoyê YNK'yî, walîtî radestî endamê Goranê Serdar Qadir kir.

Endamê Goran û Serokê Dîwana Bajêr Heval Ebûbekir ji peywirên xwe îstîfa kir û li cihê wî Endamê YNK'ê Azad Mihemed Emîn hat bijartin. Li ser van geşedanan endamên Dîwana Silêmaniyê Ekrem Şerîf, Mihemed Resûl Murad, Sebah Şehîd Fettah, Avan Cemal û Niyaz Ehmed ji YNK'ê îstîfa kirin û daxuyandin ku wê grûbekî serbixwe demizirînin. Hat zanîn ku êndamên navborî îtîraz kirine ku post bi edalet nehatine parvekirin û ji ber vê îsfîfa kirine. Di Dîwana Bajarê Silêmaniyê de 12 endamên YNK'ê, 11 endamên Goranê hene. Pispor bal dikşînin pevguherandina postan û destnîşan dikin ku post li gorî qanûnan nehatiye guhertin.

Herwiha pispor aşkera dikin ku divê Parlementoya YNK'ê biryar bidaya û Serokê RHK'ê Barzanî jî bipejiranda. Li aliyê din hin çavkaniyan da zanîn ku YNK'ê ji bo çareserkirina kêşeya walîtiya Silêmaniyê, ji PDK'ê alîkarî xwestiye.

Goranê sala 2015'an derbe li Parlemêntoyê xist û Dr. Hacî Mihemed li ser vê yeke ji Goranê îstîfa kir. Hacî anî ziman ku kêşeya walîtiya Silêmaniyê di navbera YNK û Goranê de dê heyamekê dewam bike û di nava rayedarên YNK û Goranê de niqaşên tund hatine kirin.



### Rojava ber bi qonaxeke nû ve

# Firad bû sînorê nakokiyan



**Derya Kılıç – Murad Özdemir**

Şerê navxweyî yê Sûriyê ku ji Adara 2011'an heta niha bi awayekî dijwar berdewam dike, piştî mudaxeleya Tirkiyê ya Cerablûsê ber bi aliyekî din ve diçe. Piştî destpêka vî şerê dijwar hêzên navdewletî û herêmî her yek li gor berjewendiyên xwe beşdarî vî gerembolê bûn û bi vî awayî Sûrî bû xaka ku dewletên sereke yên cîhanê bi rêya rêxistinên ne dewlet şerê hevûdû dikin. Piştî evçend pevçûn û nakokî agirê Sûrî niha tevahiya Rojhilata Navîn girtiye nav xwe û êdî her hêzek hesab û polîtîkaya xwe li gor rewşa vî şerî diyar dike. Her du hêzên cîhanî Rûsya û DYA bi destpêka şer çeperên xwe diyar kirin. Rûsyayê ji bo ber li têkçûna hevalbendê xwe rejîma Esad bigire bi awayekî aktîf beşdarî şer bû. DYA jî bi piştgiriya xwe bo hêzên çekdar ên girêdayî opozîzyonê bi her awayî nîşan da û li aliyêkê şerê rêxistinên weke DAIŞ'ê dike û li aliyekê ji bo xistina Esad ji desthilatê xebatên xwe berdewam dike.

Herdû welatên herêmî Îran û Tirkiye jî bi rûdana bûyeran her yekî dîsa li gor berjewendiyên xwe polîtîkaya xwe diyar kir. Îranê ji bilî piştgiriya siyasî hêzên leşkerî jî li Sûriyê bicihkir û bi mîlîsên xwe yên Besîc û Hîzbullaha Lubnanê niha di nava şer de ye.

**Tirkiye yekem dewlet e ku derbasî Sûriyê bû**

Tirkiyê jî ji destpêkê virve di nav de rêxistinên selefî jî opozîsyona Sûrî hewand, alîkarî da û xwest rejima Esad biruxwîne û li ser Sûrî bibe xwedî bandor. Ji ber piştgiriya rêxistinên tundrew têkiliyên Tirkiyê li gel mutefîkên wê yên ku li dijî van rêxistinan şer dikin, xerabû, Enqere bi pirsgirêkên giran re rûbirê ma, heta ku balafireke Rûsya xist û hemê siyaseta derve ya vî welatî têk çû. Demeke Enqere siyaseta xwe ya Sûriyê guhert û li ser esasê rêgiriya YPG'ê dest bi siyaseteke nû kir. Bi Rûsya re aşt bû, xwe nêzîkî rejima Şamê kir û niha bi tevî hin rêxistinên hevkarên xwe, berê xwe da korîdora Cerablûsê. Niha Tirkiye bû yekem dewlet ku tevî leşker û tankên xwe daxilê nav xaka Sûriyê bû.

Di nava hefteyê de Hêzên Artêşa Tirkiyê bi tank û topan derbasî nav xaka Rojava bûn. Artêşa Tirkiyê navê operasyona xwe weke 'Mertala Feradê' danîn û armanca destwerdanê jî weke girtina Cerablûsê diyar kir. Artêşa Tirkiyê bi zêdetirî 20 tankan, 350 leşkeran û beşdarbûna çekdarên ser bi opozîsyonê ve ket axa Rojava. Hêzên Asmanî yên Tirkiyê û Hevpeymana Navdewletî jî piştgiriya operasyonê kir. Bi destpêkirina operasyonê di nava saetan de,bajarê Cerablûsê bi piştgiriya Artêşa Tirkiyê bêyî pevçûn ji hêla çekdarên opozîsyonê ve hat kontrolkirin. Lêbelê DAIŞ'ê li bajarê Menbîcê zêdetirî du mehan li ber xwe dabû.

Armanca Tirkiyê destkeftên YPG'ê ne

Dewleta Tirkiyê ji destpêka şer heta niha rêveberiya kurdan a li Rojavayê Kurdistanê qebûl nake û dijayetiya xwe nîşan dide û di van demên dawîn de ji bo pêşîgirtina hêzên kurdî dîplomasiyeke xurt dimeşîne. Di encama vê dîplomasiyê de Tirkiye derbasî Rojava bû. Her çiqas Tirkiye armanca Operasyona Cerablûsê weke paqijkirina DAIŞ'ê nîşan bide jî dema operasyonê û awayê midaxeleyê tiştekî din dibêjin. Hêzên kurdî HSD/YPG di vê heyama dawîn de bi piştevaniya Amerîkayê li Rojava operasyonên bi bandor li dar dixin û herî dawîn Menbîc ji destê DAIŞ'ê derxistin. Ji bilî wê yekê li Hesekê jî hêzên rejîmê neçar hiştin ku bajar biterikînin. Li gel vê yekê HSD'ê amadekariyên girtina Babê dikir. Beriya niha bi girtina Grêspî Kobanê û Cizîrê bi hev ve hatibûn girêdan û hêzên kurdî jî girêdana herêmên Kobanê û Efrînê jî weke armanc danîbûn pêşiya xwe. Tirkiyê jî ku bi aloziya ligel Rûsyayê li derveyî lîstikê mabû, li hemberî van geşedanan ket nav tevgerê û di vê çarçovê de pêwendî bi Rûsya, Îran û rejîma Sûriyê re danîn. Bi qanîkirina Amerîkayê jî êdî Tirkiye bi xwe ket nav şer û gefên xwe yên ku her tîm tîne ziman pêk anî.

Piştî ku Artêşa Tirkiyê tevî hêzên Artêşa Azad ket Rojava û Cerablûsê girt, berê xwe da Mebnîcê û carê destnîşan kir ku divê şervanên YPG'ê ji rojavayê Feradê vekişin. YPG'ê li hemberî vê yekê bertek nîşan da. Lêbelê Amerîkayê ku hêzên kurdî bi piştevaniya wê derbasî wê derê bûbûn, ji YPG'ê xwest ku hêzên xwe vekşîne. Piştî demekî hêzên kurdî diyar kirin ku wan pevîra xwe pêk aniye û ber bi rojavayê Feradê ve vekişiyane.

**Helwesta Amerîka şolî ye**

Amerîkayê ragihand ku hêzên kurdî di çarçova amadekariyên Operasyona Reqqayê de vekişiyane. Wezîrê Karên Derve yê DYA'yê Kerry ji YPG'ê re ragihand ku eger venekişin ew ê piştgiriya xwe bibirrin. Rûsyayê jî li ser operasyonê helwesta xwe eşkere kir û destnîşan kir ku ew hêvî dikin operasyon bi rejîma Esad re di nava koordînasyonê de pêk were. Rejîma Esad jî daxuyaniyek belav kir û ragihand ku ev tevgera leşkerî ya Tirkiyê tê wateya binpêkirina serweriya wan û ev nayê qebûlkirin. Yekitiya Ewropayê jî diyar kir ku ew hêvî dikin ku operasyon bi DAIŞ'ê sînordar be.

Ji van bertekan jî diyar dibe ku Tirkiyê beriya ku vê midaxeleyê pêk bîne bingeheke baş ava kiriye û bi vî awayî mudaxeleyî Rojava kir. Civaka navdewletî li hemberî vê destwerdana Tirkiyê dengê xwe bilind nekir û Tirkiye niha li ser sînor bajarekî Rojavayê Kurdistanê ji ber endîşeya korîdor û herêmeke yek parçeyî ya kurdî çekdarên opozîsyonê lê bicihkirin.

Helwesta Amerîkayê ya li hemberî kurdan jî tê niqaşkirin. Ji ber ku Amerîkayê heta niha bi dehan komên çekdar yên opozîsyona Sûriyê biçek kir û piştgiriya wan kir, lêbelê van koman tevî hemû piştgiriyan jî nekarin pêşde biçin û deverên di destê xwe de jî winda kirin. Li ser vê yekê Amerîka êdî neçar ma ku berê xwe bide kurdan ku li Rojava tenê wan karî DAIŞ'ê têk bibin. Lêbelê helwesta Amerîkayê ya li ser destwerdana Tirkiyê û li hemberî kurdan bu cihê niqaşan û şiroveyên 'Amerîka destê kurdan berde' hatin kirin.

Tirkiyê bi vê destwerdana xwe nîşan da ku ew ê ji bo astengkirina herêmeke kurdî her tiştî bike. Ji ber ku Cerablûs ev demeke dirêj e di destê DAIŞ'ê de bû. Lê Tirkiyê heta niha bo girtina vî bajarî hewl nedabû. Ev destwerdana Tirkiyê kengî ku kurdan berê xwe da Bab, Cerablûs û tevahiya herêma Şehba, Tirkiyê êdî bi xwe ket nav xaka Rojava û li gorî xwe 'mertalek' ava kir. Lêbelê hevsengiyên li herêmê zû digûherin û bi destwerdana Rojava-Sûriyê qonaxek din destpê dike û her hêzek wê li gor xwe hesabên xwe bike.

Bi destpêkirina operasyonê di raya giştî û ji aliyê pisporan ve şîroveya 'Armanc ne DAIŞ e, kurd in' hatin kirin û Serokwezîrê Tirkiyê jî red kir ku armanca wan kurd e û îddîa kir ku ew ji bo paqijkirina "terorê" derbasî Rojava bûn.

Li hêla din tevî ku YPG û Artêşa Tirkiyê nehatibin hemberî hev jî, hat zanîn ku komeke YPG'ê ji hêla Hêzên Tirkiyê ve hatiye topbarankirin.

Rayedarên Rêveberiya Rojava, rayedarên ENKS'ê, parlamenterên HDP û AKP'ê, rojnameger û akademîsyenan destwerdana Tirkiyê û geşedanên dawîn ji BasNûçe'yê re nirxandin.

**Kurdo: Amerîka û Rûsya nikarin dev ji kurdan berdin**

Wezîrê Karên Derve yê Kobanê Îbrahîm Kurdo di derbarê tevgera Artêşa Tirkiyê ya li ser Rojava û girtina Cerablûsê de ji BasNûçe'yê re eşkere kir ku Tirkiye ev demeke dirêj e dixwaze midaxele bike û got: "Di encama hevdîtinan de, Tirkiyê derbasî Rojava bû. Ev helwesta dijminane nayê qebûlkirin."

Kurdo li ser helwesta DYA û Rûsyayê ya li hemberî operasyona Tirkiyê jî ragihand ku wan tu deman baweriya xwe bi hêzên navdewletî neanî ye û diyar kir ku herkesek li gor berjewendiyên xwe tevdigere û wiha axivî: "Tirkiye û Amerîka ev demeke dirêj e hevalbendên hev in. Lêbelê dostaniya kurdan û Amerîkayê hêj nû ye. Amerîka ji bo gefa terorê ji holê rake tevdigere. Em baweriyê bi tu hêzên navdewletî nayînin."

Kurdo dibêje ew baweriya xwe bi Amerîka û Rûsyayê nayînin û wisa lê zêde dike:

"Rûsyayê jî Amerîkayê jî dev ji kurdan berneda ye. Şerê kurdan yê li dijî terorê berdewam dike û gefa terorê li ser hemû cîhanê heye. Ji ber wê yekê nikarin dev ji gel û hêzên kurd berdin. Emê jî xebatên xwe berdewam bikin. Pêngava girêdana herêmên kurdî wê bidome. Li aliyê din em dixwazin rûyê van dewletên dagirker yê rasteqîn nîşanî cîhanê bidin. Proj ya me xwe îspat kiriye. Tirkiye û rejîma Esad çiqas hewl bidin jî nikarin sîstema me hilweşînin û têkoşîna me paş de bibin."

**Hevseroka Kantona Efrînê Mistefa: Me tevdîrên xwe girtine**

Hevseroka Meclîsa Rêveber a Kantona Efrînê Hêvî Mistefa jî li ser derbasbûna Tirkiyê bo nav xaka Rojava û geşedanên dawîn ji BasNûçe'yê re nirxand û diyar kir ku ew ji roja yekem ya şer heta niha vê yekê tînin ziman û got: "Gelek dewlet li pişt êrişên çeteyên li Sûriyê hene. Di serî de dewleta Tirkiyê li pişt wan e. Me di serî de ji hêzên navdewletî daxwaz kir ku hesab ji dewletên piştgirê terorê bipirsin û bi erka xwe rabin. Lê mixabin berjewendiyên van dewletan bûn sedem ku çavê xwe ji vê yekê re bigirin. Niha rastiya gotina me diyar bûye. Rasterast tankên xwe xistin Rojava, bêdengiyek navdewletî jî heye. Lê em jî dibêjin çawa ku ev nêzî 5 sal in em li ber xwe didin li hemberî çete û dewletên piştevanên terorê, weke Rêveberiya Xweser em ê li ber xwe bidin. Em tu deman nahêlin armancên wan serbikevin."

Hêvî Mistefa di derbarê helwesta Rûsya û DYA'yê de jî ragihand ku ew li ser hêza xwe şerê komên tûndrew dikin û got ku eger alîkarî ji wan re bê ew nabêjin na û wiha dewam kir: "Amdekariyên me hene. Me pişta xwe bi tu hêzan girêneda ye. Me tevdîrên xwe girtine. Ev bazara berjewendiya ye. Em ê di her warî de kar û xebata xwe berdewam bikin û tu kes nikare me astneng bike. Tirkiye di nav şaşîtiyê de ye. Xweseriya Demokratîk di qada navdewletî de wê xwe zêdetir îspat bike. Tirkiyê bi vê midaxelê rûyê xwe yê rasteqîn eşkere kir."

**Rayedarê PDKS'ê Mihemed: Destwerdana Tirkiyê projeyek kevn e**

Endamê Polîtburoya PDKS'ê Muslîm Mihemed di derbarê midaxeleya Tirkiyê bo Rojavayê Kurdistanê got ku ev proje kevn e û niha wê plana xwe birêve dibin û wiha got: "Derbasbûna dewleta Tirkiyê bo Rojava ev demeke dirêj e tê axaftin û di encama lihevkirineke di navbera Tirkiye, Amerîka û Rûsyayê de ev pêk hat. Ev mudaxeleya Tirkiyê wê şer û aloziya heyî kurtir bike, xizmeta çareseriyê nake."

Mihemed di derbarê helwesta PYD'ê ya li hemberî aliyên kurd, ENKS û derbasbûna Pêşmergeyên Roj de destnîşan kir ku Pêşmerge nûnertiya beşeke mezin ya Rojavayê Kurdistanê dike û wiha axivî: "Eger ku ew peymanên me bicih bihatana Pêşmergeyên Roj daketibana Rojava, herêmên kurdî valanedibûn, kurd nediçûn Ewropayê û wê herkesê di sengerên şer de piştgirî bidaya. Beriya hertiştî wê projeyeke kurdî hebûya li Rojavayê Kurdistanê. Bi hêza leşkerî û siyasî wê kurdî bûya. Lê peyman bicih nebûn û PYD û hêzên wê yên leşkerî derfet nadin, mejiyê xwe yê ku bi herkesî re danûstendinan dike û tenê bi kurdan re nake ev mejiya jî li ser kar e. Em ji vî mejî zirar dibîn in û vî mejî nehişt ku destê me bigihije hevdu hebe û em yekrêziya xwe ava bikin."



Di nava hefteyê de Hêzên Artêşa Tirkiyê li gel şerwanên opozîsyona Sûrî tevî tank û topan derbasî nav xaka Rojava bûn û herema Cerablûsê ji DAİŞ'ê stendin. Artêşa Tirkiyê navê operasyona xwe weke 'Mertala Feradê' danîn û armanca destwerdanê jî weke girtina Cerablûsê diyar kir. Her çiqas Tirkiye armanca tevgera leşkerî weke paqijkirina DAİŞ'ê nîşan bide jî dema operasyonê û awayê midaxeleyê tiştekî din dibêjin.

Endamê Polîtburoya PDKS'ê Mihemed li ser pêwendiya Amerîka û YPG/PYD'ê de ragihand: "Danûstendina Amerîka li gel YPG/HSD bêyî tifaqek siyasî ye. Tenê Amerîka vê rewşê bo berjewediyên xwe bikar tîne. Rêkeftinek stratejîk tune ye. Divê tifaqeke siyasî hebe."

**Parlamenterê AKP'ê Erdoğan: Ev operasyon ji bo ewlehiya sînor me gelekî girîng e**

Parlamenterê AKP'ê yê Dîlokê Mehmet Erdoğan jî helwesta hikûmetê ji BasNûçe'yê re anî ziman. Erdoğan eşkere kir ku di derbarê destwerdana Tirkiyê bo Rojava û radestkirina Cerablûsê bo çekdarên opozîsyona Sûriyê ragihand ku Tirkiyê bi awayek aktîf û bi biryar DAIŞ ji Cerablûsê paqij kir. DAIŞ li Tirkiyê gelekî çalakî pêk anîbû û di wan çalakiyan gelek kes mirin. Herwiha herî dawî DAIŞ di 20'ê Tebaxê de li Dîlokê teqînek pêk anî û 54 kes mirin. Ji ber vê yekê ev operasyon hat destpêkirin. Ji aliyê din ve ev operasyon ji bo ewlehiya sînoran hatiye kirin.

Erdoğan nerazîbûna xwe li dijî PYD'ê destnîşan kir û wiha got: "Heta îro hemû cihan berê DAIŞ bi dest dixist û paşeyê jî wan deran radestê PYD'ê dikir. Niha PKK dixwaze li wê derê dewleteke damezirîne. Ji ber vê yekê ev operasyon ji bo ewlehiya sînorên Tirkiyê gelekî girîng e. Ev operasyon ji bilî Tirkiyê, ji bo ewlehiya welatên din û cîranan jî gelekî girîng e."

Erdoğan derbarê gotinên Tirkiyê û rejîma Sûriyê lihevhatînê de jî agahî dan û wida pê de çû: "Em nikarin bi Şamê re operasyonê pêk bînin an jî kar bikin. Derbarê vê de gotinên Serokkomar, Serokwezîr û hikûmetê diyar in."

**Parlementerê HDP'ê Zeydan: Ev operasyon li dijî destkeftiyên kurdan e**

Parlamenterê HDP'ê yê Colemêrge Abdullah Zeydan jî derbarê destwerdana Tirkiyê û armanca operasyonê de ji BasNûçe'yê re axivî û da zanîn ku eger Operasyona Cerablûsê ji bo paqijkirina DAIŞ'ê be, ev rûdanek gelekî erênî ye. Eger wisa be, kes nikare dijberiyê wê bike û axaftina xwe wiha domand: "Lê wisa xuya nake. Wisa xuya ye ku ev operasyon li wê derê li dijî kurdan û serkeftinên wan tê li dar xistin. Ji ber vê yekê ev kiryar naye qebûl kirin."

Di wan rojên dawî de Tirkiyê bi Rûsya, Îran û Amerîka re hevdîtinên dîplomatîk pêk anî û li çapemeniya Tirkiyê dihat îddîakirin ku di nav vê operasyon û hevdîtinên dîplomasiyên de pewendî heye. Zeydan jî derbarê vê îdiayê de axavî û got: "Helbet di navbera Operasyona Cerablûs û hevdîtinên dîplomasiyê de tekilî hene. Divê Komara Tirkiyê êdî kurdan ji xwe re wekî dijmên nebîne. Bi salan li dijî Herêma Kurdistanê sekînî û helwesta neyînî nîşan da. Lê niha pewendiyên Tirkiyê û Herêma Kurdistanê gelekî baş in û herî zêde bi Herêma Kurdistanê re bazirganiyê dike."



**Prof. Eravcı: YPG'ê dest bi girêdana herêmên kurdî kiribû**

Akademîsyênê Zanîngeha Yıldırım Beyazıtê Prof. Dr. Mustafa Eravcı derbarê destwerdana Tirkiyê ya Rojava û radestkirina Cerablûsê bo çekdarên opozîsyona Sûriyê ji BasNûçe'yê re ragihand ku meseleya Cerablûsê polîtîkayên Tirkiyê yên li Sûriyê destnîşand dike û ev qonaxa yekemîn e û wiha axivî: "Tirkiyê berê Esad wekî xeterek mezin dihesiband. Serokwezîr Binali Yıldırım gotibû ku 'dê gelekî tişt bigûherin' û piştî vê gotina wî stratejiya Sûriyê gelekî vegûherî. Tirkiyê bi aktorên herî girîng ên Sûriyê; Rûsya û Îranê re pewendiyên baş pêk anîn. Tirkiyê ji bo xwe herî zêde rêxistinên DAIŞ û PKK'ê metirsî dihesîbine. Tirkiyê ji ber vê yekê dest bi Operasyona Cerablûsê kir. Sedema din jî ew e ku YPG, Menbîcê bi dest xistibû û YPG ji bo pevgiredana kantonên Efrîn û Kobanê dest bi kar kirin. Ji ber vê Tirkiyê hem li DAIŞ û hem jî YPG'ê dixe."

Herwiha Prof. Eravcı polîtîkayên Tirkiyên li herêmê jî nirxand û eşkere kir ku polîtîkayên Tirkiyê li dijî Sûriyê nînin; li dijî polîtîkayên kurdan e û polîtîkayên YPG'ê yên li Sûriyê qebûl nake.

**Rojnameger Bilo: Amerîka dest ji kurdan bernade**

Rojnameger Mihemed Bilo ku geşedanên li heremê ji nêz ve dişopîne jî midaxeleya Tirkiyê û helwesta hêzên navdewletî li hemberî vê yekê ji BasNûçe'yê re nirxand. Bilo got ku Amerîka dixwaze Tirkiyê di di mesela Sûriyê de bişehitîne û derbasî nav heriya Sûriyê bike û ragihand ku ew bawer nake Amerîka dest ji hevalbendiya xwe ya bi kurdan re berde. Tu hêz weke kurdan nikarin şerê terorê bikin. Amerîka ji destpêka şer heta niha gelek hêz ceribandin, lê dît ku tu kes weke kurdan li pêş terorê bisekine. Amerîka dev ji kurdan bernade. Ev meseleyek stratejîk e."

Bilo destnîşan kir ku lihevkirinek heye di navbera Tirkiye, DYA û Rûsyayê de û got, "Li gor wê yekê Tirkiyê karî ku bi çekdarên opozîsyonê derbasî Cerablûsê bibin. Ev di Sûriyê de şer wê gurtir bibe. Bi taybet jî li bakûrê Helebê di navbera herdu kanotonan de ev şer wê dijwar bibe û dibe ku bigihije Efrînê jî. Lê ev proje ya Tirkiyê wê ji bin biçe. Ev hêzên ku Tirkiye piştgiriyê didê nikarin li ser erdê şer bikin."

Rojnameger Bilo li ser vekişandina YPG'ê ji rojavayê Feradê jî diyar kir ku ev vekişandineke şeklî ye û ragihand ku ew encumenên tên avakirin ew bi xwe jî kurd in. Bilo herwiha got ku tiştên ku li Cerablûsê diqewimin wek lîstik û şanoyekê xuya dikin.



Rojnameger Tariq Karêzy:

# Barzanî ji bo navbeynkariyê amade ye

"Mesûd Barzanî siyasetmedarek e ku di asta herêmî û navdewletî de pêbawer e. Rastbîn û aştîxwaz e. Eger dewleta Tirkiye û PKK ji siyaset û kesayeta Barzanî sûdê werbigirin dê gelekî baş be. Em niha xelkê Bakûr dibînin tevî ku şerê xendeqan jî hate kirin lê meyla wan zêdetir ber bi aştiyê ve ye. "

**Mehmed Salih Bedirxan**

Bi hatina Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî bo Enqerê proseya çareseriyê dîsa hat rojeva Tirkiyê. Amaje li ser wê yekê heye ku bi navbeynkariya Barzanî wê proseya çareseriyê destpê bike. Herwiha danûstendinan di navber PKK'ê û rayederên hikûmetê de destpêkirine û proseya çareseriyê bi serpereştiya Barzanî bi rêve diçe.

Li aliyê din şandeke HDP'ê ku ji Hevserokê Partiya Demokratîk a Gelan (HDP) Selehattin Demirtaş, Leyla Zana, Osman Baydemir, Dengir Mir Mehmet Firat û Adem Geverî pêk tê di meha îlonê de serdana Barzanî bikin û proseya nû ligel wî gotûbêj bikin. Rojnamger û lêkolînerê ji Başûrê Kurdistanê Tariq Karêzy hewldanên destpêkirina proseya çareseriyê, dîplomasiya Barzanî bo Enqerê û Ewropayê û geşedanên dawî yên li RHK'ê ji BasNûçe'yê re şîrove kir. Karêzy tekezî li ser wê yekê kir ku Barzanî ji bo proseya çareseriyê amade ye ku navbeynkariyê bike.

**Bi hatina Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî proseya çareseriya Bakûr careke din hat rojeva Tirkiyê. Herwiha di konferansa rojnemevanî de Barzanî jî aşkere kir ku ew hêvîdar e. Gelo mimkûn e di demeke nêzîk de bi navbeynkariya Barzanî prose dîsa destpê bike?**

Bêguman pêwîstî bi du layanan heye ku baweriya wan bi diyalogê hebe. Pêwîst e xeteke hevpar hebe ku hem ji aliyê hikûmeta Tirkiyê ve û hem ji aliyê PKK'ê ve. Ev tiştê ku em dibînin hertim dewleta tirk hebûna kurdan di çarçoveya Tirkiyeya ku Atatürk damezirandiye de inkar kiriye. Bêguman piştî ku desthilat kete destê AKP'ê guherîneke mezin jî di siyaseta dewleta Tirkiye de jî çêbû ku berê xwe dane kurdan û proseyekê destpêkir. Û çend kanal ji bo gotûbêja li gel PKK'ê hatin vekirin. Lê di herdû aliyan de jî hin kesên tundrew hene ku berjewendiyên wan dikevin xeterê eger kêşeya kurd çareser bibe û kurd bigihêjin mafên xwe. Nêrîna cenabê Barzanî ew e ku baştirîn rêya çareseriya meseleya kurd li herçar parçeyên Kurdistanê aştî ye. Ji ber ku niha 200 sal in kurd şer dikin lê hîn negihîştine mafê xwe. Herwiha hertim ev pevçûn di nava xaka Kurdistanê de ne û lewma xelkê sivîl hertim bûne qurbanî. Lê ji dêvla van berdêlan ve tiştekî mezin bi dest naxe lewma jî di vê serdemê de baştirîn rê ew e ku kanalên siyasî û dîplomasî bibin rêya çareseriyê û gihîştina bi aramancan.

Di asta herêmî û navdewletî de Mesûd Barzanî siyasetmedarek pêbawer e. Rastbîn û aştîxwaz e. Eger dewleta Tirkiye û PKK ji siyaset û kesayeta Barzanî sûdê werbigirin dê gelekî baş be. Em niha xelkê Bakûr dibînin tevî ku şerê xendeqan jî hate kirin lê meyla wan zêdetir ber bi aştiyê ve ye. Ji ber ku dibînin şer hem bajarên wan wêran dike hem jî ew mecbûrî koçberiyê bûn û warên xwe bi cih hiştin. HDP ku xebateke medenî bi rêve dibe. Em li Başûrê Kurdistanê û hemû kurdên deverên din jî kêfxweş bûn ku yekem car partiyeke kurdî ewqas parlmanter dişîne parlmantoya Tirkiyê. Îro HDP nûneratiya siyaseteke kurdî dike û Birêz Selehattin Demirtaş siyaseteke medenî û baş bi rê ve dibe. Eger herdû şaxên medenî HDP û leşkerî PKK û herwisa hêzên din yên tevgere kurdî li Bakûrê Kurdistanê bikaribin ji tecrûbeya Başûr û Rêzdar Barzanî sûdê werbigirin. Mesûd Barzanî xwedî tecrûbe ye hem di warê xebata çekdariyê de hem jî di warê xebatên medenî de.

Divê HDP'ê fişara siyasî bîne ser hikûmeta Tirkiye û partiya desthilatdar ya Tirkiyê ku mafên kurdan biselimîne. Berî niha xebata çekdariyê pêwîst bû lê niha em dibînin ku karîgerî bandora diyalogê zêdettir e. Weke ku Mesûd Barzanî jî dibêje "eger em 10 salan diyalogê bikin ji saetek xebata çekdariyê baştir e." Serdem hatiye guhertin bêguman tesîra xebata siyasî zêdetir e.

**Proseya refrandûmê li Başûrê Kurdistanê nêzîk e gelo referandûm û serxwebûn jî ligel Tirkiyê hatiye gotubêjkirin?**

Bi baweiya min tevî ku Tirkiye îtîraf bi hebûna Herêma Kurdistanê jî nedikir lê em niha dibînin ku pêşwaziya siyasetmedarên Herêma Kurdistanê dike. Me dît ku Serokkomar, Serokwezîr û Serokê Parlamantoya Tirkiyê pêşwaziya Birêz Barzanî kirin. Tirkiye ji bo berjewendiyên xwe bi dilniyayî rûyê xwe ji bo Herêma Kurdistanê re vedike. Dibe ku dewleta Tirkiyê ji hebûna dewleteke kurdî ya serbixwe razî nebe. Lê dema ku ew dewlet nûnertiya xelkê Başûrê Kurdistanê dike, bi qenaeta min dewleta Tirkiyê dê vê yekê qebûl bike. Û dê bibe piştgir û alîkarê Herêma Kurdistanê. Serxwebûna Kurdistanê biryareke giştî ya xelkê Başûrê Kurdistanê ye. Xelkê nava kolanên me jî niha serxwebûnê dixwazin wisa ku xelkê Bakûrê Kurdistanê niha aştiyê dixwazin. Em niha 100 sal in ku bi dewleta Iraqê û erebên Iraqê re dijîn. Hertim tehdîda Iraqê û neteweya serdest li ser me hebû.

**Barzanî piştî serdana Tirkiyê ber bi Ewropa ve çûye, xwendina te ji dîplomasiya vê qonaxê ya ku Mesûd Barzanî bi rê ve dibe çi ye?**

Birêz Barzanî çendîn sal in ku bernameyek ji bo gihîştina serxwebûnê daniye û çendîn salan Pêşmergayetî kiriye, li Komara Kurdistana Mehabadê ji dayîk bûye. Barzanî di hemû pêngavên xwe yên siyasî û dîplomasî de fikira serxwebûna Kurdistanê dike. Bêguman meseleya sereke ya rêwîtiya ber bi Ewropayê ve meseleya serxwebûna Kurdistanê tîne rojevê. Ji ber ku piştgiriyeke navdewletî jî ji bo vê meseleyê re hebe. Heta niha hin dewletan amadebûna xwe ji bo vê meseleyê derbirîne. Û dixwazin piştîvaniya serxwebûna Kurdistanê bikin. Niha di Rojhilata Navîn de Herêma Kurdistanê weke cihekî demokrat û aram û ewle ye. Bingehên demokrasiyê heta radeyekê li Başûrê Kurdistanê xurt in. Rêzgirtin li qanûnên mafê mirov û penahdan penaberan yên ku berê xwe didin Herêma Kurdistanê. Siyasetekê dimeşîne ku ev sîstem ligel nimûneya dewleteke modern de diguncê. Hin dewlet piştgiriya serxwebûna Kurdistanê dikin lê divê em ji bîr nekin ku Mesûd Barzanî tekez vê yekê dê misoger bike. Ev rêwîtiya jî wisa xuya ye ku Mesûd Barzanî ji bo bidestxistina piştgiriya zêdetir ya welêtên din girtiye ber xwe.

**Tê gotin ku Mesûd Barzanî dê serdana Îranê jî bike, hûn dîplomasiya li gel Îranê çawa dinirxînin?**

Îran di Rojhilata Navîn de dewleteke gelekî bibandor e. Di piraniya meseleyên Rojhilata Navîn de bandora Îranê heye. Direjtirîn sinorê Herêma Kurdistanê bi Îranê re ye, zêdetirî 600-700 km sinorê Herêm bi Îranê re heye. Dîplomasiya di navbera Îran û Herêma Kurdistanê de gelekî girîng e. ji ber ku partiyên ku niha li Bexddayê desthilatdar in alîgirê Îranê ne û mezheba wan yek e lewma jî tesîra Îranê li ser Iraqê û bi taybetî jî Bexdayê gelekî zêde ye. Bidestxistina rezamendiya Îranê gelekî girîng e. Sîstema hikûmeta Îranê li gel sîstema Tirkiyê ferq dike û ew gelekî ji hev cuda ne. Şêwaza hukumraniya wan dînî mezhebî ye. Ez bawer nakim ku ew li ser vê meseleyê gelekî tund bin, lê serdana Mesûd Barzanî roleke mezin dilîze û nigeraniyên Îranê ji bo serxwebûna Kurdistanê kêm bike.

Yanê tiştê herî girîng ji bo Îranê ew e ku partiyên Rojhilatê Kurdistanê çalakiyên çekdariyê di nava sinorê Îranê de nekin. Ew dixwazin ku sinorê Îran û Herêma Kurdistanê ewle û aram be. Û tiştek din jî heye, tevî ku hikûmeta Îranê bihêz û bibandor e jî lê nikare pêşiya refrandûm û serxwebûna Herêma Kurdistanê bigire ji ber ku ev tişt xwestek û daxwaza nava kolanan jî. Niha çend sal in ku Herêm ji her hêlê ve, demografî, cografî û aboriyê bingehên dewletkê tê da hatine binyadkirin. Yanê ji sala 1991'ê heta niha di rastiyê de Herêma Kurdistanê weke dewletek e û piştî sala 2014'ê ku pêwendiya Herêmê û Bexdaye hate birîn êdî ji her hêlê ve Herêm bi xwe xwe bi rê ve dibe yanê dewleteke serbixwe ye ku tenê nehatiye ragihandin. Demekê berî niha rêxistineke amerî rapirsiyek li Herêmê çêkiribû ku %86 xelkê Herêma Kurdistanê dengê xwe dane serxwebûnê. Yanê ev xwestekeke giştî ye û Mesûd Barzanî jî li ser vê arasteyê bi pêş ve diçe.

**Niha du sal in ku Hewlêr Bexda ketine nava qeyranekê û gelek kêşe di navbera wan de hene, ev qeyran çawa tê çareserkirin?**

Bi baweriya min ji bilî cudabûna Herêma Kurdistanê ji Iraqê bi ti awayî ev kêşe nayên çareserkirin. Ji dema ku dewleta Iraqê çêbûye pê ve û kurd hertim di nava şoreşê de ne û armanca dewleta Iraqê jî wendakirina netewa kurd bû. Lê kurd ji hêla çand û jiyan cografya û ji her hêlekê ve ciyawaz e lewma jî ez difikirim ku bi ti awayî ev mesele çareser nabe ji bilî cudabûnê. Me hemû rê ceribandine. Ji sala 1919'ê vir de gelek şoreş pêk hatin û me gelek rê ceribandin niha ji bilî diyarkirina sinorê Herêmê ragihandina dewleta serbixwe ya kurdî ti rê nemane. Ji bo vê yekê jî em di vê bawerê de ne ku divê bi awayekî aştiyane ev qonaxe bê derbaskirin. Kanalên pêwendiyê bên vekirin. Endamên me li parlmantoyê hene, Serokkomar kurd e, cihgirekî Serokwezîr kurd e. Divê em bi birayên xwe yên ereb re bibêjin, "Em 100 sal in ku bi hevre dijîn lê hertim şer di navbera me de heye eger em bibin du dewlet û du netewe ji bo me herdû aliyan jî baştir e." Bila em bibin du dewletên cîran ku em alîkariya



hevdu bikin û piştgiriya hev bikin. Lê kurd dixwazin ku proseya cudabûnê bi awayekî aştiyane be.

**Amadekariya Oprasyona Mûsilê jî hene, hin rayedarên Bexdayê ji pêşveçûna Pêşmerge ber bi Mûsilê ve nerazî ne gelo ev mesele kêşeyeke nû di navbera Hewlêr û Bexdayê de çêdike?**

Ez wisa bawer dikim ku li Iraqê du hêzên leşkerî yên cuda bi du îdeolojiyên cuda hene ku yek nûnertiya Herêma Kurdistanê dike û yek jî nûnertiya hikûmeta Iraqê. Pêşmergeyek wisa difikire ku ew xelkê Kurdistanê ye û axa cîrana Kurdistanê diparêze lê serbazekî Iraqî yan endamekî Heşdî Şebî baweriya xwe bi dewleteke bi navê Iraqê dihîne, lewma ev du nêrîn ji hev cuda ne û dema ku ev du nêrîn rastî hev tên di navbera wan de pevçûn çêdibe. Derbarê Mûsilê jî faktorên bi bandor li ser rewşa Mûsilê zêde ne. Bajarekî sunenişîn e. Berî sala 2003'ê xelkê Mûsilê serdest bûn. Di nava dewletê de ew bihêz bûn. Lê piştî ruxana Saddam xelkê Mûsil û derverên sunne xwe weke qurbanî dizanin.

Niha di nava sunneyan de jî meyleke wisa heye ku dixwazin bibin beşeke Herêma Kurdistanê. Lê bi awayekî pratîk ev tişt gelekî zehmet e. Ji ber ku kurdên sune û erebên sune du pêkhatên ji hev cuda ne. Gelek kêşe li Mûsil çêdibin. Beşek ji cografyaya Kurdistanê hîn nehatiye rizgarkirin. Herwisa beşê Nînowa heye ku cografiyayeke têkel e. Xrîstiyan, ereb, kurdên şîe, sune, kakeyî û êzdî jî tê de hene. Ev herêm li rojhilatê Mûsilê ye û li rojavayê Mûsilê jî Şengal heye ku niha di bin kontrola Pêşmerge de ye. Herêma Telefere heye ku tirkmannişîn e. Erebên Mûsil jî dixwazin federaliyekê ji hemû pêkhatên Mûsilê pêk bînin. Projeya Iraqê jî parastina yek Iraq û yek cografiya û yek dewlet e. Lê tiştê rastî ew e ku Pêşmerge di beşên kurdî de cih digire û ew beşek ji cografiyaya Kurdistanê ne. Niha Bexda dewleteke mezhebî ye.

**Navçeyên ku di destûra 140'ê de cih digirtin niha ketine bin desthilata Herêma Kurdistanê, çarenûsa wan li siberojê dê çi be?**

Ev navçeyên ku di bin kontrola Pêşmerge de ne wisa dimînin û refrandûm jî bi vî awayî çêdibe. Pirseke wisa heye ka gelo kengî li wan navçeyan refrandûm tê lidarxistin? Yek ku ew dengê xwe ji bo serxwebûnê didin û duyem jî deng didin ka gelo vegerin ser Herêma Kurdistanê yan na. Herêmên ku di bin kontrola Herêma Kurdistanê de ne dengekî didin lê herêmên madeya 140 du dengan didin. Weke mînak niha gelek ji erebên Kerkûkê dixwazin ku Kerkûk biçe ser Herêma Kurdistanê. Berê wisa nebû. Berî hatina DAIŞ'ê rewş wisa nebû. Niha rêjeyek ji ereb û tirkmanên Kerkûkê jî dixwazin herine ser Herêma Kurdistanê. Ji ber ku Herêm ewle ye û aramî têde heye. Herêmeke ku pêşketin tê de çêdibe. Û di navbera etnîkan de cudahî nayê danîn. Niha xwestekeke giştî heye ku ew dixwazin bibine beşeke Herêma Kurdistanê.

**Kêşe û qeyranên navxweyî Goran, Yekîtî û Partî, di vê qonaxê de ewê çawa çareser bibin? Fuad Hûsên serdana hemû layenan kir, dibe ku parlaman bê aktîvkirin û ew kêşe bên çareserkirin?**

Bêguman boçûnên ciyawaz di nava layenên siyasî yên Kurdistanê de tiştekî asayî ye. Ji ber ku her partiyekê riwangeheke xwe heye. Û ji goşeyekê ve li meseleyan dinêre. Li Başûrê Kurdistanê du ekolên siyasî hene ekolek ya PDK'ê ye ku 70 salî ye ku PDK niha lê xwedî derdikeve. Ev partiya siyasî ya herî mezin li Başûrê Kurdistanê ye. Û YNK'ê heye ku birêz Mam Celal rêbertiya wê dike. Niha Goran jî heye. Goran jî ji YNK'ê cuda bûye. Bi baweriya min partiyên siyasî li Başûrê Kurdistanê herdem mijar were ser berjewendiya Kurdistanê pêwendiyên siyasî ya wan partiyan dengê xwe dikin yek. Boçûnên ciyawaz li ser meseleya demokrasiyê û meseleya serokatiya Herêm heye. Gelekî normal e ku layenên siyasî li ser meseleyên ciyawaz nêrînên cuda bidin. Lê hin caran medya van meseleyan zêde mezin dikin. Kêşeyên siyasî heta radeyekê tiştekî normal in. Dema ku mesele giştî û netewî bin ew hemû dengê xwe dikin yek.

**Pisporên siyasî qala vê yekê dikin ku piştî DAIŞ'ê metirsiya Heşdê Şebî dê hebe, nêrîna te li ser vê meseleyê çi ye?**

Heşdê Şebî hêzeke mezhebî û ne tenê ji bo Kurdistanê re herwiha ji bo dewletê Iraqê re jî metirsî ye. Hin komên siyasî yên şîe xelkê asayî bi kar digire û ciwanên herêma başûrê Iraqê tevlî xwe dike. Ev hêzeke rêkûpêk nîne û hin caran di nava xwe de jî şer dikin. Ev hêz ne tenê ji bo Kurdistanê herwisa ji bo dewleta Iraqê re jî metirsî ye. Ji ber ku ew hêz mezhebî ye û nayê kontrolkirin. Li gor qanûn û rêbazan tevnagerin. Di navçeyên sune de jî hereketên pir xerab kirin. Malên suneyan teqandin û deverên suneyan wêran kirin. Dewleta Iraqê hewl dide ku vê hêzê têxe nava çarçoveyekê lê ev yek jî hêsan nîne.

# ZİMANGEH



Abdullah Kıran

Di vê beşa rêzenivîsa xwe de emê li ser tegehek îdarî ku bandor li jiyana me dike û çendîn pevy û hevokên ku di jiyana rojane de tên bikaranîn û li ber wendabûnê de rawestin.

**Kanun hükmünde kararname: Biryarnama qanûnhêz (Statutory decree):** Biryara ku ji alî lijneya wezîran ve tê derxistin û piştî ku di rojnameya fermî de çap bû, şûna qanûn an rêbazan digire; biryara ku hêza wê ya qanûnî heye.
**Mînak:** Îro welatê me bi biryarnameyên qanûnhêz tê rêvebirin, rewşeke awarte heye.
**Mînak:** Desthilatiya siyasî bi biryarnameyeke qanûnhêz sê hezar kes ji kar avêtin.
**Mînak:** Hukûmetê bi biryarnameyeke qanûnhêz 15 unîversîte dan girtin.
**Zang:** Navbirra keviran a gellek kûr; şeqar. Çaxê mirov kevirekî davêjê, demekê bi şûn de deng tê.
**Movikê Piştê: Bel kemiği (Backbone):**
1)Hestiyê piştê yê ku laş hildigire
2)Tiştê herî bingehîn ê ku hebûna radigire.
**Mînak:** Ji bo hebûna neteweke ziman movikê pişte ye, kuz iman çû netew hunda dibe.
**Mînak:** "Serê min bûye mîna berê aşan e
Pişt li min bûye kilingê hesinkaran e
Hestiyên movikê pişta min ji hev ketine
Mîna maxê ser xirban e."
(Destana Memê Alan, r.167)
**Zolik:** Zeviya biçûk a wek zûlekê.
**Tîrik:** Perçek erdê yê dirêj.
**Mînak:** Em li biniya gund, di tîrika Evdo re derbas bûn.
**Bêwan:** Erda fireh û berdar ya li pêş gund. Erda hokkirî.
**Mînak:** Em di bêwana mala şêx re derdas bûn.
**Gotineke pêşiyan:** Jinên rind û zeviyên bin gund bela ne.
**Berr:** Riya ku di nav zinaran re derbas dibe.
**Berr:** Cîraxek wek xaliyê.
**Berşik:** Xalîça biçûk.
**Mînak:** Ma berr û berşikên me li kuderê ne.
**Pêderî: Kapı eşiği (Doorsill):** Şemûg, pêpelûka ber derî.
**Zûxir:** Geçit (Pass) geliyê asê û teng.
**Derwêş: Derviş (Santon):**
1)Kesê ku girêdayî şêxekî ye û li erbanê dixe.
2)Kesê ku nefsa xwe xwariye û wek pêderiya malê xwe nizim dike, qeretî pê re tune, evdal.
**Heqîv:** Torbeyê bi gûlik û xemilandî, bi pirranî li ser zîn tê hilgirtin.
**Gîsk: Erkeç (Goat):** Karikê nêr ê yeksalî. Gava ku çilo didin pez, pêşî gîskan û pezê kullek berdidin, da ku bizin zorê li wan nekin.
**Ez hevalê gîskan im:** Kesên ku kal bûne û ji pertav ketine ji bo xwe dibêjin.
**Ne ser e û ne mişt e:** Sağı solu belli değil (Temperamental)
1)Kesên mirov baş nikare bi wan ewle bibe.
2)Kesên ku text û bextê wan ne li hev e.
3)Ne vala û ne jî tam tije ye.
Mînak: Te got Delalê? Welleh ne ser e û ne jî mişt (rast- dûz) e.
Mînak: Îsal rewşa genim çawa ye? Hema ne ser e û ne jî mişt e.

***Têbinî: Ji bo rexne, gazin, lome û pêşniyazên xwe ji min re binivîsin: 29abdullah@gmail.com***

# Efrîn li jêr pêla penabera ye

Derya Kılıç

Piştî ku Operasyona Menbîcê bidawî bû û bajêr heta gundê Arîma ji DAIŞ'ê hat paqijkirin û çav li rê bû ku HSD berê xwe bidin Bab û Cera-blûsê, di carekî de rejima Sûrî li Hesekê, Tirkiyê jî li Cerablûsê êriş kirin.

Eger hêzên HSD'ê xwe bigîjînin Babê, hingê têkiliya herema li jêr destê DAIŞ'ê û Tirkiyê re qut dibe. Di navbera Bab û Tel Rifada herema Efrînê de ji 30 km mesafe heye. Marê ku heremeke cîranê Efrînê ye ji jor ve ber vi Tirkiyê ve di destê Artêşa Azad ya Suriyê de ji jêrve jî di destê rejîmê de ye. Eger HSD, Babê bidest bixîne di navbera Efrîn û Kobanê de korîdorekî tê danîn. Bi vî awayî peytexta DAİŞ'ê Raqqa ji heremên din yên Sûriyê îzole dibe. Li sînorê Tirkiyê herema Cerablûsê jî niha ketiye bin destê yekîneyên Artêşa Azad ku cîranê Kobanê ye. Dewleta Tirkiye destûr nade ku YPG li dijî Cerablûsê têkeve tevgerê. Piştî destpêka tevgera artêşa tirk li heremê hêzên HSD'ê ji Rojavayê Çemê Firadê vekişiyan û niha amadekariya êrişa ser Raqqayê dikin.

Çav li rê bû ku piştî rizgarkirina Menbîcê hêzên HSD'ê berê xwe bidana bajarê Babê, ku astenga dawîn ya di navbera Efrîn û Kobanê de. Piştî ku hêzên rejîmê li Hesekê bi YPG'ê re ketine şer, PYD'ê hêzên xwe yên li heremê ber bi Hesekê ve şandin û wiha xuya dike ku operasyona Babê dibe ku demekî texîr bibe.

Li ser tevlîhevî, şer û aloziyên heremê bi taybetî ji Bakûrê Helebê û niha jî ji herema Cerablûsê gelek sivîlan berê xwe dane Efrînê. Bi vî awayî li Efrînê gelek penaber kombûne û şêniya gund û bajaran gelek zêde bûye û peda-wîstiyên wan yên jiyanê kêm bûne.

Herwiha bi rizgarbûna Menbîcê, heremên Rojava ji aliyê aborî, siyasî, rêveberiyê û leşkeriyê ve ji nû ve tên avakirin. Rayedarên kantonên PYD'ê ragihandibûn ku armanca wan pevgihandina Cizîr, Efrîn û Kobanê ye. Ji her sê kantonan ve yek jî Efrîn e ku di warê aborî, siyasî û leşkerî de amedekariya xwe dike. Efrîn, berê rizgarkirina Menbîcê 3 sal û nîv e ji çaraliyan di bin dorpêçê de bû û ji ber vê jî di warê aboriyê bi kêşeyên mezin re rûbirû bû. Piştî ku rejima Sûrî, li Helebê rêya Castillo bidest xist, di navbera Heleb, Şam û Efrînê de rê vebûn û ambargo bi dawî bû. Niha rêyên Efrînê vebûne û dikare pêdiviyên xwe ji derve peyda bike. Efrîn ji bilî vê hewl dide ku ji bo aboriyê jiyana gundewariyê û çandiniyê pêş bixe. Ji aliyê din ve li Efrînê rewşa awarte hatibû ragihandin. Rayedarên Efrînê derbarê rewşa awarte de zanyarî dan.

Li gorî rayederan; ji ber ku hemû xeterên li ser bajêr derbas nebûne, wan jî ji bo ewlehiya gel rewşa awarteyê ragihandine. Herwiha ji ber ku Efrîn ewle ye, niştecihên ji cihên şer koçî Efrînê dikin. Hem ambargoya li ser Efrînê û hem jî pêla koçberiya ya ji Helebê ber bi Efrînê bûye sedem ku



pêdawîstiyên jiyana rojane jî li Efrînê neminin. Herwiha li kantonê derman, ard û cilûberg nema tên peyda kirin.

Hevserokê Meclîsa Zagonsaz a Efrînê Osman Şêx, Aborînasê Zanîngeha Efrînê Dr. Ehmed Yûsif û Serokê Berê yê Meclîsa Tirkmenan Abdurrah-man Mustafa rewşa Helebê û ambargoya li ser Efrînê ji BasNûçe'yê re şîrove kirin.

### Hewla pêşxistina çandinî û gûndewariyê



Hevserokê Meclîsa Zagonsaza Efrînê Osman Şêxo derbarê rewşa aborî û rewşa awarte ya Efrînê de agahî da BasNûçe'yê û eşkere kir ku Efrîn ji ber ku 3,5 sal in di nav siyasetek dorpêç de ye, hertim krîzek hebû. Lê Kantona Efrînê di warê erdnîgariyê de di çandinê de pêş ketiye. Şexo axaftina xwe wisa berdewam kir: "Em hewl didin ku çandinî û gûndewariyê pêş bixin. Gelê Efrînê têra xwe çandiniyê dikin. Efrîn ji demê rejîmê ve bê derfet û bê îmkan bû. Ji ber vê jî gelekî zehmetî kişand. Lê bi rizgarkirina Menbîcê, rêyên wê yên Kantona Kobanê û Cizîr vebû. Ew vekirina û rakirina dorpêçê, Efrînê dê pêştir bixe."

### "Ji bo ewlehiya gel rewşa awarte ragihand"

Şexo derbarê sedemên ragihandina rewşa awarteyê de wisa axivî: "Şer li Helebê her ku diçe mezintir dibe û herçiqas Minbic hatibe rizgarkirin jî derdora Efrînê komên radîkal û îslam yên tundrew hene û xetera wan li ser Efrînê heye. Me ji bo ewlehiya gel rewşa awarte ragihand û me xwest gelên xwe hişyar bikin. Pêdiviya me bi wê hebû. Ji bo ku gelê xwe, civaka xwe hemû saziyên xwe bikaribin biparizin, me rewşa awarte ragihand."

### Ji bo koçberan kamp

Ji ber şer, gelek kes koçî Efrînê dikin. Osman Şêxo di wî warî de rewşa Efrînê nirxand û da zanîn ku dema ku li deverekî şer peyda dibe, koçberî dest pê dike. Ji ber ku Efrîn cihekî ewle û aram e, pirraniyên gel tên Efrînê. Lê ew di warê aboriyê de sedemê kêşeyan dibe. Ji ber ku têkoşîna wan, têkoşîneke mirovatî û demokratîk e, kî ji kîjan deverê bên ew pêşwazî dikin, ew ji bo wan kampan çêdikin. Li kampekê nêzîkî 500 malbat te da heye. Şêxo axaftina xwe bi van gotinan bi dawî kir: "Me niha dest bi kampa duy-em kiriye. Me nû dest pê kiriye. Me ji saziyên navneteweyî û Neteweyên Yekbûyî re diyar kir ku em wekî Efrîn, pêdiviya me bi alîkarî û piştevaniyê heye."

### Pedîviya Efrînê bi dermanan heye

Aborînasê Zanîngeha Efrînê Dr. Ehmed Yûsif, rewşa aboriya Efrînê ji BasNûçe'yê re nirxand û got: "Efrîn di warê çandiniyê de gelekî pêş ketiye. Fêkî, sebze, nok, genim li bajêr tên hilberîn. Ji aliyê xurek de ti kêmasiyên Efrînê tuneye." Yûsif bal kişand ser ambargoya li ser bajêr jî û wiha do-mand: "Di warê derman û cilan de pêdiviya Efrînê heye. Şîrên zarokan tuneye. Berhemên pişesaziyê tune ye. Ji ber ku Efrîn nikare berhêmên pışesaziyê hilberine, pêdiviyên wê yên bi derman, meteryalên nexweşxane û cilan hene. Ew jî bondarek neyînî li ser jiyana gel dike. Sedema wê jî dorpêç bû. Bandora rizgarkirina Menbîcê di paşerojê de dê diyar bibe."

### Şerê Helebê gûrtir bûye

Şerê li mezintirîn bajarê Sûrîyê, li Helebê gûrtir bûye û ji her du alîyan gelek kes hatine kuştin. Li gor zanyariyên hatine bi dest xistin artêşa Sûrî êrîşeke nû ya endamên Artêşa Azad li başûrê rojhilata Helebê şikand û ew neçar kir ku paşve bikşin. Li aliyê din hêzên esmanî yên Rûsyayê ji ser Îra-nê li Helebê li dijberiya Sûriyê da. Hat zanîn k udi encama êrîşa Îranê de gelek kesên sivîl jî mirine.

Gelek sivîlên Helebê jî koçî Kantona Efrînê kirine. Li gorî pisporên Sûriyê, sivîlên ku di cihên muxalifan de ne, jiyana wan di nav xeteriyê de ye. Ji ber ku muxalif nikarin bi firokan cihên di nav destê rejîmî de ye, bombebaran bikîn. Lê Rûsya, cihên muxalifan bombebaran dike û bi taybetî firin, nexweşxane û dibistanan bombebaran dike. Li gorî agahiyên dawî; Rûsya herî dawî li Daret Îzzayê nexweşxaneyek bombebaran kir û heta niha bi tevahî 9 nexweşxane hatine bomberankirin. Herwiha niştecihên Helebê direvin û diçin Efrînê.

### Serokê Berê yê Meclîsa Tirkmenan Mustafa: Heleb giring e

Serokê Berê yê Meclîsa Tirkmenan Abdurrahman Mustafa jî derbarê rewşa sivîlan û şerê Helebê de agahî da BasNûçe'yê û da zanîn ku Heleb ji bo şoreşa Sûriyê şerê navxweyî yê Sûriyê gelek girîng e. Mustafa daxuyand ku di wan rojên dawî de bi serrastbûna pewendiyê Tirkiyê û Rûsyayê, rejîm, Rûsya û Îran zêdetir hewl dan ku Helebê dorpêç bikin. Li Sûriyê hevsengî nemaye. Rejîma Esad, Rûsya û Îran hewl didin ku li vê derê hevsengiyê li gor xwe biguherînin û serbikevin. Ji ber ku kî Helebê bi dest bixe, ew ê di hevdîtînên navneteweyî de jî de bihêz be.

# Li ser Rojava tifaq û lîstikên nû

Memê Botî




Piştî ku şerê navxweyî li Sûriyê dest pê kir û ew welat tevlîhev bû û welatên cîran jî li gor siyaset û berjewendiyên xwe helwesta xwe li hemberî vê meseleyê diyar kirin. Hin welat bûne dostê Sûriyê û hin welat bûne dostên opozsyona Sûriyê.

Tirkiyê ji serî de helwesta xwe li dijî rejîma Sûriyê ragihand û alîkariya grûpên îslamî yên sune kir û bi awayekî eşkere nerazîbûna xwe li hemberî desthilata Esad û rejîma Baas nîşan da.

Îranê bi her awayî alîkariya Esad kir û piştevaniya xwe ji desthilata Esad û ragihand, hêzên Besic û Hîzbullahê şand bo alîkariya rejîmê.

Kurdên Sûriyê ku PYD pêşengiya wan dikir bi awayekî defakto bi rejîma Esad re li hev kirin û kontrola Rojava girtên destê xwe. Li hemberî rejîma Esad şer nekirin û tevlî opozsyona Sûriyê jî nebû. Kurdan xwe weke xurttirîn hêza li hemberî DAIŞ nîşan dan û bi vî awayî bala raya giştî û dewlet û hêzên navnetewî jî ber bi xwe ve kişandin. Koalîsyona dijî DAIŞ ku ji aliyê Amerîka ve tê birêvebirin, PYD weke 'dostê xwe' dibîne û demeke li dijî DAİŞ'ê alîkariya YPG'ê dike.

Rûsya jî tevlî koalîsyona dijî DAIŞ'ê bû lê zêdetir helwesta xwe nêzî Îranê kir û rejîma Esad parast. Ji ber kêşeyên di navbera Tirkiyê û Rûsya ku piştî ketina balafira şer ya rûsî ew kêşe kûrtir jî bûn. Rûsya li dijî opozsyona Sûriyê jî gelek êriş pêk anîn. Bi vî rengî Îran, rejîma Esad û Sûriyê bûne bereyekê û Tirkiye û welatên ereb û opozîsyona Sûriyê jî bûne bereyekê ku ev yek weke şerê şîe û sune jî tê dîtin.

Dema ku Tirkiyê dît siyaseta wê li Sûriyê bi ser nakeve û ew ji rewşa niha ya li herêmê nikarin bigihêjin armancên xwe, ji aliyekê ve jî statûya kurdên Sûriyê û rewşa Rojava rojbiroj berz dibe lewma Tirkiye venêrîneke giştî li siyaseta xwe ya li herêmê kir. Zivirîneke giştî di siyaseta xwe de destpêkir. Pêwendiya xwe bi Rûsya re çêkir û berê xwe da Tehranê. Tê îddîakirin ku bi awayekî veşartî bi rejîma Esad re jî li hev kir û niha jî êrişê Cerablûsê kiriye.

Li gorî daxuyaniyên rayedarên Tirkiyê ew bi ti awayî ji xurtbûna kurdan li Sûriyê razî nîn in û bidestxistina hemû sînor ji aliyê YGP'ê ve ji bo ewlehiya xwe re weke metirsiyeke mezin dibînin. Naxwazin kantonên Efrîn û Kobanê bigihêjin hev. Ji aliyeke din ve Îran jî ji xurtbûna kurdan nerazî ye. Piştî ku ev hevdîtin di navbera Tirkiyê û welatên navborî de çêbûn şerê rejîm û PYD li Hesekê destpêkiribû ku rejîma Esad balafirên şer li hemberî sivîl û hêzên kurdan bi kar anîn. Li ser rewşa dawî ya li herêmê û qonaxa nû ya pêwendiya di navbera welatên navborî de akademîsyen Dr. Jabar Qadir, û siyasetmedar Îdrîs Nessan nêrînên xwe bi BasNûçe'yê re parve kirin.

**Dr. Qadir: Ev hempeymanî li hemberî kurdan çêbûye**

Dr. Jabar Qadir li ser rewşa û qonaxa nû di pêwendiya bi Tirkiyê û welatên derûdorê hin zanyarî bi BasNûçe'yê re parve kirin. Dr. Qadir ragihand ku ev qonax weke çêkirina blokekê li hemberî hegemoniya Amerîka û Rojava ye. Dr. Qadir herwisa amaje kir ku ev siyaseta nû demkî ye û di pêwendiya siyasî ya welatên navborî de kêşeyên binyadî hene ku bi hêsanî dê çareser nebin. Akademisyen Qadir bal kişand ser danûstendinên Îran-Rûsya - Tirkiyê û geşedanên dawî yên li herêmê jî û xwendina xwe ya ji ser bûyeran wiha anî ziman: "Ew dixwazin li hemberî hegemoniya Amerîka û Rojava blokekê çêbikin. Di nav vê yekê de jî ber ku kurd weke hevpeymaniya Amerîka tê destnîşankirin metirsiya kurdan ji bo wan hemûyan re jî heye lewma jî ev blok bi rengekî li hemberî kurdan çêbûye. Lê wekî ku hin şiroveker dibêjin ku ev hempeymanî demkî ye ji ber ku di navbera wan bi xwe de jî gelek kêşe û arîşeyên stratejîk hene. Wek mînak Tirkiye endamê NATO' yê ye nikare bi Rûsya re bibe hevpeyman. Yan kêşeya Îranê bi Erebistana Siûdî û welatên ereb yên Kendavê re heye ku hempeymanê Tirkiyê ne. Ew jî nikare bibe hempeymaniyeke baş."

Akademîsyen Jabar Qadir destnîşanî bi Operasyona Cerablûsê rewşa rejîma Beşar Esad jî kir û daxuyand ku Sûriye di vê qonaxê de nikare roleke mezin bilîze ji ber ku ew bi xwe jihevketî ye û problemên wan gelekî zêde ne. Qadir li aliyê din rewşa Rûsyayê jî bi bîr xist û tekezî li ser wê yekê kir ku kêşeyên navxweyî yên Rûsya jî bi bîr xistin û wiha axivî: "Em behsa rejîma Sûriyê nekin ji ber ku Sûriye weke dewleteke jihevketî ye. Ew nikare roleke girîng bilîze. Wisa ku ez dibînim ev hempeymaniyeke demkî ye û hin xalên sereke wan komî ser hev dike. Her yek ji wan dewletan jî bi kêşeyên xwe yên hundirî re mijûl in. Em rewşa Tirkiyê dizanin ku bi taybetî jî piştî hewla derbeyê rewşa aborî ya Tirkiyê xerab bûye. Û Rûsya jî bi qasî xwe bi kêşeyan re rûbirû maye, kêşeya wê ya bi Ûkraynayê re û embargoya ku welatên Rojavayî û Amerîka li ser Rûsya saz kirine."

**"Peywendiyên Îran - Rûsya û Tirkiyê demkî ne"**

Dr. Jabar ragihand ku Tirkiye ji ber meseleyên aborî pêwendiya xwe bi Rûsyayê re nêzîktir dike û bi vî awayî hewl dide pêwendiyên xwe yên aborî ji yîn siyasî cuda bike. Amaje bi pêwendiya na ya Îran û Tirkiye li dijî avabûna herêmeke kurdî li Rojava jî kir û got ew siyaset demkî ne û bi vî awayî dawî li axiftina xwe anî: "Di vê qonaxê de Li Rojhilata Navîn pêgehek ji bo Rûsya re nemaye niha tenê Sûriye maye û ew dixwaze hejemoniya xwe li Rojava xurt bike dixwaze weke faktoreke navdewletî bi Rojava re danûstandinê bike. Gelek problemên Rûsyayê jî hene. Ew ketiye nava şerê Sûriye û bi Îranê re li hemberî welatên ereb blokek pêk aniye. Ew blok bi awayekî Tirkiyê jî têkildar dike. Tirkiye hewl dide pêwendiyên xwe yên aborî ji yên siyasî cuda bike. Lê mebesta sereke ya têkiliya Tirkiyê bi Îranê re dijayetiya wan li hemberî daxwaziya kurdan re ye û ji ber ku kurd weke faktoreke girîng di Rojhilata Navîn de hatine ser sehneyê. Ew dixwazin eger ji destê wan bê rê nedin ku kurd bigihêjin asteke bilindtir yan jî herî kêm ew e ku ew bikaribin destkeftiyên kurdan kêm bikin. Lê weke ku min got ev pêwendî demkî ne û stratejîk nînin."

**Siyasetmedar Îdrîs Nesan: Armanca pevnegihandina kantonan e**

Îdrîs Nesan Wezîrê berê yê Darê Derve li Kobanê li ser meseleya qonaxa nû ya pêwendiyên Tirkiyê, Rûsyayê, Îranê û geşedanên leşkerî yên li Sûriyê ji BasNûçe'yê re axivî. Siyasetmedar Nesan ragihand ku welatên Kurdistan parçekirî tevî ku siyaseta wan ji hev dûr be jî lê li ser meseleya kurdan hertim li hev dikin. Nesan amaje li ser wê çendê jî kir ku Tirkiye û Îran ji avabûna sîstema federal li Rojava nerazî ne û ew naxwazin destkeftiyên kurdan a li Rojava seqemgîr bibe û ew hertim dibînin ev welatên ku Kurdistan di nava wan de hatiye parçekirin tevî ku gelek nakokî di navbera wan de hebe jî lê li ser meseleya kurdan hertim li hev dikin. Niha jî aloziya ku îro çêbûye jî şer û pevçûn li Sûriyê çêbûye welatên navnetewî weke Amerîka û Rûsya û Ewropa jî tê de roleke girîng dilîzin."

Siyasetmedarê Rojavayî da zanîn ku kurd dikarin sîstemeke federal û demokratîk ji xwe re ava bikin, welatên ku berjewendiya xwe li dijî federalîzmê dibînin nikarin vê yekê tehemul bikin û siyaseta xwe ya berê ku li dijî Esad û rejîma Baas bû ew dibînin ku dixwaze têkiliyan bi Esad re çêbikin. Nesan Operasyona Cerablûsê jî bi bîr xist û amaje li ser wê yekê kir ku Tirkiye û hevpeymanên wê dixwazin herêma navbera Azaz û Cerablûsê bigirine destê xwe û hewl didin ku biçine aliyê Albabê jî û bi awayekî dixwazin rê li hemberî pevgihana kantonên Kobanê û Efrînê bigirin. Niha ew dibînin ku helwesta dewletên Îran û Tirkiyê jî li hemberî vê sîstemê ne."

Dilşah Amedi

# Tendurustiya Kobanê ne baş e!

Piştî dopréça DAIŞ'ê ya di 15 Îlona 2014'an de ku ji sê aliyan êrişê Kobanê kir bajar û gund vala bibûn. Şerê Kobanê zêdetir ji du mehan berdewam kiribû. Bi fermana Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî Pêşmerge derbasî Kobanê bibûn û ligel YPG'ê û YPJ'ê şerê DAIŞ'ê kiribûn. Herwiha firokeyên hevpeymaniyê jî li bingehên DAIŞ'ê dabûn û bajar ji wêran bibû. Di encama pevçûnên dijwar de bajar di 26'ê Çileya 2015'an de bi temamî jî destê DAIŞ'ê hatibû derxistin.

Beriya şer li Kobanê zêdetir ji 400 hezar şêniya bajêr û gundewarê wê hebûn. Ji ber şer û pevçûnan xelkê Kobanê koç kirin û pirraniya wan jî derbasî Bakûr bûbûn. Bi rizgarbûna bajêr hejmareke zêde ya xelkê vegeriyan mal û gundên xwe. Hin kes ji wan jî li Bakûr man hejmareke zêde ya ji wan jî koçî Ewropayê kirin.

Bi vegera xelkê re xelkê Kobanê, bi kêmasiyên derman, nexweşxanê û xwarinê re rûbirû man. Ji ber ku Kobanê ji 3 aliyan ve di bin dorpêça DAIŞ'ê de bû riya Cerablus, Tel Abyad û Reqqa di destê DAIŞ'ê de bûn. Ji ber vê hemû rêyên Kobanê girtibûn û ti tişt nedigehîşt herema Kobanê. Ji bilî xwarin û derman, gel bi kêmasiyên elektrîk û mazotê re jî rûbirû bûn. Lê kêmasiyên herî mezin û girîng nexweşxanê, derman û xwarin bûn. Ji ber kêmasiyên derman û doktoran, zarok nayên aşîkirin, nexweşiyên wekî sorik, kînor di nav xelk û zarokan de peyda bûn.

Li aliyê din piştî rizgarkirina bajêr di serî de Weqfa Xêrxwaziyê ya Barzanî, UNICEF, YE'yê, şaredariyên HDP'ê alîkarî şandin ji bajêre re.

Nêzîkî 2 sal in Kobanê hatiye rizgarkirin, lê ew hemû kêşeyên wê bi tevahî nehatine çareserkirin û hîn jî berdewam dikin. Herwiha Deriyê Murşidpinarê jî girtî ye û ji wê deriyê jî ti tişt derbasê Kobanê nabe. Welatiyên Kobanê di nav wan kêşeyan da hewl didin ku jiyana xwe berdewam bikin.

Nûnerê Komelaya Dadê ya Kobanê Biradost Kemal, Pizîşkê Nexweşxaneya Kobanê Yaşar Elî û Doktor Hikmet Abdurrahman derbarê kêmasî û rewşa Kobanê de agahî dan BasNûçe'yê.

**Serokê Komelaya Rojava Kemal: Nexweş nayên tedawîkirin**

Serokê Komelaya Dadê ya Kobanê Biradost Kemal rewşa bajêr ji BasNûçe'yê re nirxand û diyar kir ku dema ku Kobanê hat rizgarkirin, nexweşxanê tunebûn. Lê piştî rizgarkirina dest bi avakirina nexweşxaneyan hatiye kirin niha li bajêr 3-4 nexweşxaneyên mezin li Kobanê hatine avakirin. Biradost radigihîne ku bajêr derman jî kêm in, pizîşk jî kêm in. Ji ber wan kêmasiyan kesên ku nexweşiyên wan giran in, ji ber tunebûna derman û pizîşkan nayên tedawî kirin yan jî nikarin tedawî bibin. Dema ku ev tunebin, rewşa nexweşan jî ber bi xerabbûnê ve diçe. Ji ber ku nexweş nayên derman nabin yan diçin Qamişloyê yan jî diçin Şamê yan jî diçin Bakûrê Kurdistanê.

Li aliyê din Kemal da zanîn ku hemû saziyên medenî yên li Kobanê nebûna derfetên tendurustiyê bi bîrxistine û wan bang li saziyên navdewletî yên mafê mirovan kirine. Kemal tekezî li ser wê yekê kir ku arîşeya sereka ya Kobanê nebûna pizîşk û dermanane û rewşa tenduristî ya bajêr wiha anî ziman: "Hemû rêxistinên sivîl li Kobanê ji bo vê mijarê banga saziyên navnetewî dikin û di vî warî de alîkariya wan dixwazin. Dibêjin pizîşk kêm in, derman kêm in. Ne ku pizîşkên Kobanê tune ne. Dema ku şerê Kobanê destpêkir, hemû pizîşkên Kobanê çûn Tirkiyê. Dema ku şer xelas bû, ji wan hindêk kes vegeriyan. Kêmasiya me ji ve derê derdikeve. Kêmasiya mezin pizîşk û derman in. Hemû rê girtî ne. Derman nayên Kobanê. Pir caran qutîyek derman jî derbasî bajêr nabe. Ji aliyê Sûriyê ve DAIŞ'ê rê girtî ne. Tirkiyê sînorên xwe girtî ye. Murşidpinar 6 meh in girtî ye. Li derdora Kobanê şer heye û ji ber vê sedemê riyên Kobanê girtî ne. Heger rê hebe, saziyên navnetewî derman tînin. Lê ti rê tuneye. "

> Kobanê ku di encama pevçûnan de wêran û kavil bûye, hîn jî di bin dorpêçê de ye û heta niha arîşeyên sereke yên bajêr çareser nebûne. Heta niha arîşeya sereke ya bajêr nebûna pizîşkan û xizmetguzariya tendurustiyê ye.

**Doktor Elî: Derman kêm e**

Pizîşkê Kobanê Yaşar Elî kêmasiyên derman û pizîşkên li Kobanê ji BasNûçe'yê re nirxand û got: "Piştî rizgarkirina Kobanê nexweşxanê hatin avakirin û hin pirsgirek hatine çareserkirin. Pizîşkên navnetewî li Kobanê kar dikin. Heta niha di warê dermanê de gelekî zehmetî hebûn. Bo mînak dermanên nexweşiyên gûrçikan û dermanên din gelek caran nîn in. Hîn jî ew kêmasî berdewam dikin. Demeke berê dermanên Kobanê ji derê Mûrşidpinarê dihatin. Berê riya Kobanê ji aliyê Bakûr ve vekiribû. Bi girtina derî di derbasbûna dermanan de gelekî zehmetî çêbûn. Ji ber tunebûna dermanan, em bi pirsgirekan re rûbirû ne."

**"Hin derman bi rêyên firokeyan ji Şamê tên"**

Elî herwiha bal kişand ser buhabûna nirxên dermanan û da zanîn ku hin derman bi riyên firokeyan ji Şamê tên. Ew jî gelekî biha ne. Ew jî ji bo xelkê zor giran in. Hin derman ji Başûr ve tên. Ew jî zehmet e. Ji ber ku dermanên ku tên gelekî kêm in: "Ez bawer dikim ku dema ku ew dermanên ku derbas dibin jî gelekî kêm û gelek dereng digehêjin ber destê me. Divê em dermanan di 3 mehan de belav bikin. Herwiha ew derman ji sînor di 3 mehan de ji sînor derbas dibe û heta ku digehêjin xelkê jî xerab dibin."

Elî derbarê xebatên pizîşkên navnetewî jî zanyarî dan û eşkere kir ku ji serî ve ji saziyên navnetewî Pizîşkên Bêsînor li Kobanê hene. Di warê alîkariya tenduristî û operasyonan de jî bo xwe nexweşxanyeke piçûk çêkirine. Heta ew pizîşk di warê derman de jî alîkariyê dikin. Alîkariyên xwe pêşkeş dikin. Saziyek Ewropî jî li wê derê kar dike û ew jî alîkarî dike û wan jî nexweşxaneya jinan çêkirine. Li gorî şêweyên xwe ji bo jinan kar dikin û wan derman dikin.

**Doktor Abdurrahman: Em nikarin xizmetê bikin**

Pizîşk Hikmet Abdurrahman jî derbarê kêmasî û nebûna derfetên tenduristiyê û rewşa xelkê de zanyarî dan BasNûçe'yê. Dr. Abdurrahman, daxuyand ku ji ber dorpêça li ser Kobanê derman derbasî bajêr nabin û ji ber nebûna dermanan ew nikarin xizmeta xelkê bajêr bikin. Abdurrahman destnîşanî bi talûkeya li ser jiyana xelkê kir û wiha axivî: "Demeke dirêj e Kobanê di bin dorpêçê de ye. Ji Bakûr jî derî hatiye girtin û kesek nikare derbas bibe. Ne xwarin, ne kelûpel, ne jî derman derbasê Kobanê dibin. Em nikarin tiştekî derbasê heremê bikin. Em niha li Kabonê di warê tenduristiyê de gelekî kar dikin. Lê ji ber kêmasiyên dermanan em nikarin xizmeta gelên xwe bikin."

Abdurahraman rewşa Kobanê ya beriya şerê navxweyî û piştî wê bi bîr xist da zanîn ku beriya şerê Kobanê 30-40 pizîşkên Kobanê hebûn. Niha 15 pizîşk li Kobanê mane û dema şer destpêkiriye, pizîşk jî ji Kobanê reviyane. Ji ber vê di warê pizîşkan de jî gelekî kêmasî û pêdiviyên wan hene. Herwiha ew di warê dû beşan jî de pizîşkan qet peyda nakin û pizîşkek rojanê derdora 100-150 nexweş derman dikin.

Abdurahman bal kişand ser hejmara nexweşiyan û wida pê de çû: "Niha li Kobanê tenê 2 nexweşxanê hene. Yek ji bo jina ye. Ya din jî ji bo xelkê giştî ye. Li gorî bernameya me, heta 20 rojên din jî em ê du nexweşxaneyên din vekin. Ji wan yek ji bo dayîkbûna zarokan e û yek jî ji bo tevahî ye."

Abdurahman derbarê aşîkirina zarokan de jî agahî dan û got: "Zarok tên aşîkirin û heta niha me du caran zarok aşê kirine. Di wî warî de UNICEF ji me re derziyên aşiyê şandin. Zarok li Kobanê ne bêaşî ne. Lê heger ew astengî berdewam bikin, dibe ku em nikaribin zarokan aşî bikin. Dema ku şer xelas bû, ji ber ku zarok nehatibûn aşî kirin, nexweşiya sorikan çêbû û belav bû. Lê me bi UNICEF'ê re têkilî çêkirin û UNICEF jî li ser Dîlokê û Deriyê Murşidpinarê ji me re şandin Kobanê."



## Konservatûar a Aram Tîgran

# Li şopa hunermendê mezin

Emre Topuz

Di heyamên dawîn de li Amedê di warê çand, huner û ziman de xebat û pêşveçûyînên mezin heye. Ziman, çand û hunera kurdî ku tevî ji sîwana dewletekê bêpar in jî heta niha hebûn û dewlemendiya xwe parastiye. Pêşdeçûnek berbiçav û girîng heye û gelek sazî dezgeh li ser çand û kelepora kurdî û ziman xebatan dikin.

Konservatûar a Aram Tîgran jî yek ji wan cihan e ku di her warî de pêşdebirina çand, huner û zimanê kurdî ji bo weke peywîr û armanc hilbijartiye. Konservatuvara Aram Tîgran jî wek kesayetê ku navê xwe jê girtiye, di her warî de ji bo kurdî xebatên gelek girîng pêk tîne. Ji xwe Aramê Tîgran jî ji bo kurdî xebateke bêhampa birêve biribû û niha konservatuara bi navê wî xebata hunermendê mezin roj bi roj bilind dike.

Konservatûar a Aram Tîgran di bin banê Şaredariya Bajarê Mezin ya Amedê de parastina nirxên çandî, netewî û civakî ji bo xwe weke armanc dibîne û di beşên, sînema, muzîk, wêne, govend û gelek warên din de perwerdê dide û xizmeteke mezin bo kurdî dike. Konservatûar a Aram Tîgran ji bo pêşîgirtina bişaftinê jî pewîreke girtiye ser milên xwe û jibilî dersên di warên cuda de konferans, sempozyûm, panel, semîner, komxebat û kargehan jî pêk tîne.

Gerînendeyê Konservatûar a Aram Tîgran Şêrko Kanîwar di derbarê kar û xebatên konservatûarê de ji BasNûçe'yê re axivî.

Şêrko Kanîwar diyar kir ku ew di beşên muzîk û şanoyê de perwerdehiyê didin. Heta niha wan di beşên sînema û wêneyê de jî perwerdehî dida. Lê îsal ew ê giraniya xwe bidin beşa muzîk û şanoyê û ragihand ku xwendekar nava hefteyê û 5 rojan perwerdehiyê dibînin. Kanîwar herwiha ders tê dayîn û temênê serlêdanê jî di navbera 15-28'an de ye. Kanîwar da zanîn ku heta niha 50 xwendekar ji beşên cuda mezûn bûne û bernameya dersên şanoyê 2 salan û ya muzîkê jî 3 salan berdewam dike herwiha diyar kir ku heftê 5 rojan ew dersan didin.





### Zarok tên perwerdekirin

Gerînendeyê Konservatûar a Aram Tîgran li aliyê din ragihand ku ji bo ku zarok karîbin bi awayekî jixwebawer, azad, bi ewle, bi tendurustî û kêfxweşî, bi zimanê xwe yê zikmakî û bi çanda xwe zarokatiya xwe bijîn, ji bo ku zarok karîbe têra xwe bike, li ser esasên hişmendiya demokratîk, ekolojîk û azadiya jinê, zarokên di çaxê kreşê de ne, bo zarokê 30 mehî-5 salî bernameyên weke lîstîk-muzîktevger, herwiha çalakiyên cûrbecûr yên wek sêwîrînerî, fîlm temaşekirin, Orkestra ya rîtmên xwezayî û stranbêjiyê hene û wiha axivî: "Lîstikên ku bi riya muzîkê ji bo zarokan hatine amadekirin, esasê vê perwerdehiyê pêk tînin. Zarok bi riya vê bernameyê him çîvanokan, stranên zarokan û stranên gelerî hîn dibin, hevnasîna wan a bi muzîka kurdî ya resen re bi awayekî pir aktîf çêdibe. Zarok di vê çalakiya hunerî de bi riya xêzkirin, boyaxkirin û kolajê li gorî asta temenê xwe afirîneriya xwe li pêş dixin. Ji bo ku rê li ber asoyên nû veke, ji bo ku xeyalên zarokan rengîn û zengîn bike, ji bo ku gav bi gav ber bi awayên dîtin û fikirînê ve biçin. Zarok di vê bernameyê de li fîlmên karton,anîmasyon û kurtefîlman temaşe dikin. Ders an çalakiya Orkestra ya rîtmên xwezayî jî bingeha hemû dersên muzîkê yên Konservatûar a Çand û Hunerê ye. Zarok di vê çalakiya hunerî de ne bi awayekî teorîk lê bi awayekî pratîk, li gorî asta têgihiştina xwe, fêrî hêmanên rîtmê dibin. Di çalakiya stranbêjiyê de, stranên kurdî yên gelerî û stranên zarokan ên ji hêla hunerî ve di asteke bilind de ne tên bikaranîn. Her wiha zarok motîfên newayên kurdî yên gelerî hîs dikin û ji bo perwerdehiyên polên pêştir bingeheke xurt di xwe de ava dikin. Stranbêji, di navbera doh, îro û sibeyê de dibe pireke pir xurt û domdar a çandî."

### Dersê zaravên kurdî tên dayîn

Şêrko Kanîwar girîngiya perwerdeya zarokan bi bîrxist û ragihand ku ji bo ku yekîtiyeke netewî pêk bê, divê zarokên kurd bi hemû zaravayên kurdî pewerdeyê bibînin. Herwiha ew dixwazin zarokên çar parçeyên Kurdistanê ji hev fêm bikin, divê zarava ji hev neyên veqetandin û perwerdehiya her sê zaravayan jî di konservatuarên Kurdistanê de ji pola 1'em dest pê bike. Zarok ji wêjeya zarokan hînî çîrok, fabl, helbest û çîvanokên kurdî dibin û dersên di konservatuarê de tên dayî wiha rêz kirin: "Di dersa govendê di destpêkê de ji nav govendên Kurdistanê yên herêma ku zarok lê dijî tên hînkirin. Dersa koro, govend û rîtmê bi koordîne tên meşandin. Zarok him distirên û him jî govendê digerînin. Ji hêla din ve civakîbûna zarokan pêş dikeve, di zarokan de hestên netewî û çandî xurt dibin, di navbera doh, îro û sibeyê de dibe pireke pir xurt û domdar a çandî ava dibe. Di dersa stranbêjî û çanda dengbêjiyê de piranîya stranên ku di vê dersê de tên gotin, ji stranên ku di dema kreş û pêşdibistanê de hatine fêrkirin pêk tên. Ji ber ku zarok van stranan berê dizanin, di ser van stranan re hînkirina muzîkê hêsantir e. Materyalên vê dersê yên sereke stran û newayên Kurdî yên gelerî ne. Stranên ku li vir hîn dibin di rîtim- orkestra ya rîtmên xwezayî- û dersa govendê de jî tên bikaranîn. Her wiha mehê carekê, jînenîgariya dengbêjekî û stranên wî dibin mijara dersê."

### Dersên cûrbecûr

Herwiha Kanîwar axaftina xwe wiha domand: "Di dersa alfabeya muzîkê de bi awayekî teorîk jî muzîk tê hînkirin. Ji bo xwendin û nivîsandina muzîkê perwerde tê dayîn. Materyalên perwerdehiyê wekî her car ji newa û stranên gelerî pêk tên. Di dersa amûran de perwerdeya amûrên tembûra sêtêl, keman, kemançe, sentûr, bilûr, fîq, amûrên rîtmê, û piyanoyê destpê dike. Di dersa teşeyên muzîka kurdî de zarok li gel stranbêjiyê, teşeyên muzîka kurdî yên wekî heyranok, narînk, payîzok, serşoyan hîn dibin. Naveroka stranên kurdî yên gelerî hîn dibin. Di dersa dramaya zarokan de Ji bo ku kesayetiya zarokan bi tevahî li pêş keve, ji bo ku kesekî bihevseng û bextewar bê afirandin, ji bo ku zarok rêbaza xwe ya fêrbûnê ya herî baş keşif bike û standardên serkeftinê bilind bike, ev ders girîng e. Ev çalakî jî li gorî hemû bernameyên dibistanê li gorî temenên cuda li gorî roj û saetên perwerdehiyê bi pergaleke domdar tê amadekirin."

Şêrko Kanîwar di dewama gotara xwe de ragihand ku hemû xwendekar û perwerdekarên dibistanê bi hev re, li Dîwanxaneya Dibistanê, mehê carekê, bi cil û bergên xwe yên herêmî dîwanekê li dar dixin. Di van dîwanxaneyan de, tiştên ku zarok di nava perwerdehiyê de hîn bûne çîrok, stran, çîvanokan bi awayekî xwezayî tên pêşkêşkirin. Malbatên zarokan jî di van dîwanxaneyan de cî digirin. Her wiha di şevên zivistanê de, heftê carekê, ji bo gelê taxê jî di dîwanxaneya dibistanê de şevbihêrk tên lidarxistin.

### Ji Rojhilat 4 mamoste dersan didin

Şêrko Kanîwar Gerînendeyê Konservatûar a Aram Tîgran ragihand ku 4 mamosteyên wan ê ji Rojhilatê Kurdistanê jî hene û ew jî dersan didin zarokan: " Di hemû beşên hunerî de, sînema, muzîk, govend, wêne, kurs tên dayîn. Kûrsên me ji 4 mehan carekê vedibin. Şagirtên ku asta 1'em qedandin di karin 4 mehên din jî di asta 2'yem de perwerdehiya xwe berdewam bikin. Em wekî Konservatûar a Aram Tîgran di heman demê de stranên zarokan û pirtûkên dersê jî amade dikin. Me ji bo dewra nû wekî Orkestra ya Aram Tîgran, ji bo zarokan xebata albumeke muzîkê daye pêşiya xwe. Her wiha wê albumeke muzîkê jî ji berhemên ku heta niha orkestraya me pêşkêş kirine, bê derxistin. Îsal bi avabûna Navenda Çand û Kongreyê ya Amedê re, êdî wê xebatên Konservatûar a Aram Tîgran li vê navendê bên kirin. Mekana me ya aniha li taxa Şehîtlîkê jî wê ji îro û pê de wekî Konservatûar a Zarokan a Aram Tîgran xebatên xwe bi awayekî xurttir û berfirehtir bimeşîne. Aniha ji Rojhilat 4 mamosteyên me yên muzîkê hene. Ev mamoste dersên kemançe, sentûr, tar, sêtar û tembûrê didin. Hemû kesên ku dixwazin li konservatuara me dersan bidin, serî li me didin. An jî em dikevin nava lêgerînan û hewil didin ku kesên di beşa xwe de pispor li konservatuara xwe bikin mamoste."

# Botanîkzanên dinya û filoraya Kurdistanî!

Ehmed Dirihî





Di sey hîrê sey serre vercê, botanîkzanê dinya vejîyê, her goşeyê dinya ra tageyrayî. Kam ca de çi nebat (dar, vaş, vil û...) dîyo, name dayo ci. Her çî ra ver, nameyo îlmî yo latînî dayo înan. Ewro her cayê dinya de, nebatî pê ney nameyana yenî sinasnayîş. Û tira vanî nameyo botanîk. Her milet zî vera ney nameyan, nameyê verînanî xu genî yan nameyê newe pananî.

Tay botanîkzanê namdar zî amey welatê ma de, erdê bawkalanê ma ser o zî, tageyrayî. Dar, vaş û vila ke tîya de dîyo, name kerdbî. Hema zî hê erdê ma ser o geyrenî û nameyanê neweyan danî.

Heq a ma kurd zî, hem ney nebatanî xu bisinasni, nameyê latînîyî bimusi û vera ney nameyan, nameyekî hê şarî ma mîyan de yî cabiki, eke nameyê kurdî peyda nêbî, newe û nameyê îlmîyan bidi ci.

Seke vengê şima bêro mi: “Ma nêşkenî, la dewleta ma ha ça da !”

Zerrê mi ra zî, na yena ra: “Homa bîyaro werî, nizdî de ma zî benî wayîrê dewleta xu!”

Hela ke botanîkzanan nebatanê dinyayî ra name daybî; nameyê heywanan, termanê rengan, boye, tehm, şekil û cayo ke a nebat hê tede resenî (habîtat), yan zî nameyê botanîkzanan, nameyê milet û welato ke o / a nebat tede bîyo zergûn, pê înan a name diyayî.

Nebatî ke tenya cayek de zergûn bîbî, cayekna nêresî nînan ra îlmê botanîkî de nebatê endemîkî vajîyenî. Sewbîna cayan de ney nebatî zergûn nêbenî. Coka hela ke ney nebatî name dîyayî, zafînê nameyê ay milet, yan zî nameyê ey welatî ya name dîyayî.

Botanîkzanan nebatî ke erdê kurdan ser o, yan zî ma vaji welatê ma Kurdistan ser o bîyî zergûn, têwirê / cureyê înan, pê ney nameyan a name daybî.

Carduchorum, karduchorum: Kurdan
Kurdica, kurdicum û kurdicus: Kurdî
Kurdistanica, kurdistanicum û kurdistanîcus: Kurdistanî

Ez nameyê ney çend vaş û vilanê ma, pa fotograf û nameyê kirdî ya ramojnena:
Biarum carduchorum: Karîya kurdan
İris reticulata var. kurdica: Gulbizaya kurdî
Paeonia kurdistanica: Heşvila kurdistanî

Biarum carduchorum: Cisê ney vaşî ra şarê ma kurdan cayê xu gore; bilikê heşî,haz, kardim, kardî, karî, kardun, karzûn, kîkê kero, kîrqazî, kulîlka ereban, lalo qerto, livik, lûz, marmaroşk, qarî, zîlika ereban a name danî. Seba ney goreyê cayê xu kurdî ma eşkenî no vaşi sey karîya kurdan, kîrqazîyê kurdan yan zîlika erebanê kurdan a name bido.

İris reticulata varyete kurdica: Şima şarî ma yê kurdan heme na vila ma sinasnenî. Wextê newrozê de pelanê xu akena. Û ma vaji her cayê Kurdistan de çend têwirê na vile estî. La nînan ra tenya yew varyete (çeşîd) welatê ma de bena zergûn. Seba ke na varyete tenya erdê ma kurdan ser o bena zergûn, ma eşkenî ney ra bivaji gulbizaya kurdî. La şarê ma mîyan de belezîzk, bilbizêk, bîzalek, çavdan, gulbiza, gulgej, gulsosin, helale, karzî, keçkûre, kilbizike,kolbiza, kulbizik, newroz, pelezê, pirpizêk, pîspizik, qolbize, sîsin, sosina gelekreng, şînala û xizêm a name bidi. Ma kurdî eşkenî ney nameyan zî hetani û sey numune bivaji: bilbizêka kurdî, newroza kurdî, şînalaya kurdî ûsn.

Paeonia kurdistanica, vilika welatê ma ya. Kirdone de erdê Dêrsim û Çolîg de bena zergûn. Şarê ma mîyan de sey gula heşî, gula hirçê, heşvil, sagule, savil, vila heşî yan vilheşik a name dîyena.

Kurmancî ma ney ra vanî guhbizink, gula hirçê, gula royî, gula sor, gulbizink, gulinge. La seba ke na vile tenya Kurdistan de bena zergûn ma nameyê na vile eşkenî, heşvila kurdistanî yan kurmancî ma eşkenî pê nameyê gula hirçê kurdistanî ya name bidi.

Nameyo îlmî yo latînkî, eke çekuyê kurd yan Kurdistan a bidîyo, vera nameyê latînkî nameyê îngîlîzî, firansizî û yên tirkî de zî, sey numuneyên jêrînan name dîyayî.

Phlomis kurdica: Pê ziwanê îngîlîzkî navê “kurdish sage”, pê ziwanê firansî “Phlomis du kurdistan” pê ziwanê tirkî “munzur şalbası.” Ma kurd zî eşkenî pê ziwanê xu, “guhbelokê kurdî “ya name bidi.

Orobanche kurdica: Pê ziwanê îngîlîzkî, “kurdish broomrape” pê ziwanê firansizkî “orobanche du kurdistan”, pê ziwanê tirkî ya “şarkbakla kıranı” û ma kurd zî sey “gurikê kurdistan” yan “vergvaşê kurdistan” a name bidi.

Lîsteyê Nebatanî Tirkîya ke serrê 2012 de hîmayeyê serekkomarê Tirkîyayî Abdullah Gülî de pê destê botanîkzanê Tirkîyayî, yê ke pê nameya latînî name dîyaybîyî, heme pê nameyê tirkî ya zî name dîyayî. Nînan ra;

Onobrychis kurdica: Kürd korungası
Pigris strigosa subsp kurdica: Kürd şirosu
Salvia kurdica: Kürd şalbası
Symphtum kurdicum: Kürd kafes otu, ya amey namedayîş.

Çîyo ke tiya de bala mi anceno, nê botanîkzanan hemin ra tu kes / çew, nebatê erdî ma pê çekuyê kurmanc, zaza / kird, soran û goran a name nêdayo. Pîyorin pê çekuyên carduchorum, kurdicum yan kurdistan a name dayo.

Floraya Îranî yê rojhilatê welatî ma, hela ke name kerdbî, nînan ra ê ke eyaletê Luristanê de name kerdbî, înan zî pê nameyê luristanica, luristanicum û luristanicus a name kerdî.

Xebata winayin de ney botanîkzanan ra, bara ereqê çareyî; babîyê botanîkzanan Carl Lineaus (1707–1778), nuştoxê Floraya Orientalis, Edmond Pierre Boissier (1810–1885) û nuştoxê Floraya Tirkîya, Peter Hadland Davis (1918–1992) û se ra zafêr botanîkzanan tede esta.

Jêr de şima hem nameyê ney botanîkzanan, hem zî xebate xu de key /çi mehel nameyê kurd, kurdan û Kurdistan a, kamcîn nebatê ma name dayî, pîyorin mi şima rê sey la ya, kerdo derzîn a.

Konê Reş

## Nûrî Dêrsimî

# Seriyê mêrxasek bi bihaya 4000 zêrên osmanî

Pêwîst e ku mirov di govenda mêran de dîlanê bigerîne, li gor bejin û bala wan, bejin û bala xwe bihejîne, û pîş û sazên wan ji gelê xwe re derîne. Erê, êş û azarên wan şanî gelê xwe bide, berxwedan û pêdariya wan, mêranî, dilsozî û wefadariya wan ji xwendevanên zimanê xwe re raxîne.

Di rojên 10-11-12/02/2009'an de, bo serdanekê çûme bajarê Helebê, Efrînê û Çiyayê Kurmênc bi tevayî Deşta Cûmê, Şikakan, Çiyayê Lêlûnê û Navçeya Şêrewiyê, da ku pêzanînan li dor kurdên resen êzîdiyan kom bikim. Di vê geşt û gerê de, çav bi gelek kesan ketim, bi gelek kesan re axifîm û min pirsa gelek kesan û tiştan ji wan kir. Di nav re jî, min pirsa hin navdarên kurdan wek Nûrî Dêrsimî kir. Ewên ku xebat û bizav di ber kêşeya gelê me de kirine û malê xwe û canê xwe di rêka welatê birîndar de winda kirine..

Wiha ez li ser serboriya Dr. Vet. M. Nûrî Dêrsimî sekinîm û wî gelekî bala min kişand. Nûrî Dêrsimî di Adara 1892'an de, li gundê Axzonîkê –parêzgeha Dêrsimê, ji Îbrahîm û Zelîxe re çêbûye, xwendina xwe ya seretayî li gundê Xozatê û ya navîn li Xarpêtê diqedîne, paşê, sala 1911'an diçe Stenbolê, zanista bijişkiya ajalan dixwîne. Hêj ji ciwaniya xwe ve, bi temenê xwe yê piçûk, ew tevî refên kar û xebatê dibe. Sala 1918'an, ew di Komela Tealî Kurdistan de, ya ku bi pêşengiya siyasetmedar û zaniyarê kurdê gewre Seyid Ebdilqadirê Nehrî û Emîn Elî Bedirxan bi rê ve diçû, dibe endam, û da ku gelê xwe ji bindestî û koletiya "Roma Reş" rizgar bike. Ji ber çalakiyên xwe, ew tê binçavkirin. Paşê ji Stenbolê vedigere Dêrsimê, welatê bav û kalan û di adara 6'ê Adara 1921'ê wî û hevalê xwe Elî Şêr, li gor biryara Komela Tealî Kurdistan dest bi serhildana Qoçgiriyê kirin û yekemîn car di dîroka kurdan de Ala Kurdistanê bilind kirin. Lê mixabin dewleta Tirkiyê bi tundî û hovîtiyê şerê wan kir. Dawî hat girtin, paşê bi alîkariya Seyid Riza serbest hat berdan.

Girtin û zindankirina wî, hêvî û moralên wî bêhtir gur kir û têkoşîna wî ya netewî bêhtir pê şêrîn bû. Dema serhildana Dêrsimê di sala 1937'an de destpê dike, ew dibe yek ji rêberên wê yên sereke.

Mixabin, piştî ku serhildan têk diçe, ew neçar dimîne, berê xwe dide Binxetê, nav kurdên Sûriyê, ji wir diçe Ûrdinê û di sala 1940'î de, li bajarê Helebê, taxa Miheta Bexda cîwar dibe, kar û xebata rewşenbîrî û ramyarî dike.

Piştî dardekirina Seyid Riza, dewleta Tirkiyê 4000 zêrên Osmanî ji bo serê Nûrî Dêrsimî dike xelat. Dema dewleta Tirkiyê dibihîze ku ew li Ûrdinê ye, ji hikûmeta wê dixwaze ku Nûrî Dêrsimî radestî wê bike, lê Ûrdin xwesteka wê red dike. Li Sûriyê, li gora biryara dewletê nasnameya Sûriyê werdigire.

Dr. Nûrî Dêrsimî; yê ku yekî bingehîn bû ji lehengên serhildana Dêrsimê ya 1937 ye. Piştî têkçûna serhildanê di dawiya sala1937'an de û bidarvekirina bihiştî Seid Riza serokê serhildanê û her deh hevalên wî, Dr. Nûrî Dêrsimî ji neçarî û bi halekî xerab xwe gihand Sûriyê, bajarê Helebê. Û herwiha her 35 salên xwe yên dawî li Helebê, di nav kurdên Çiyayê Kurmênc de derbas kirin.

Belê tevî xwînherikandina wek cobaran di serhildana Dêrsimê de, ew ji desthilanîn neket û xwe ji ber neyartiya tirkan neda alî. Dewleta Tirkiyê ku heval, dost û xizmên wî kuştin, sirgûn kirin û di zîvariyan de belavkirin. Û herwiha li Sûriyê jî wek lebatekî aktiv ket nav refên welatparêzên kurdan de, li kêleka Bedirxaniyan û hevalên wan sekinî û bi wan re kar û xebat di ber kurdewariyê de kir. Û di sala 1952'an de pirtûka xwe a navdar bi navê: Dêrsim di Dîroka Kurdistanê de / Kürdistan Tarihinde Dêrsim), li Helebê çap kir, têde, tawan û kiryarên hovane yên Roma Reş ya ku 222 gundên kurdan wêran kirine û bêtir ji 15 hezar kurd, zarok, jin, pîr û kal kuştine esker kir. Lê mixabin ku ji rex rijîme ve hat qedexekirin. Ta mirinê jî Nûrî Dêrsimî nexwest neyar zanibe ku têk çûye. Û razî nebû, ku serê wî li ser ti axê bê danîn ji bil axa çiyayê Dêrsimê pêve. Û her dem û gav bi axîn û hesreta axa çiyayê Dêrsimê bû.





Ji min re gotin; Berî ku Nûrî Dêrsimî here ber dilovaniya Xwedê, wî di sala 1964'an de, ew mizgeftika biçûk ku wek xanîkî bû di Goristana Şêx Henan de, li Kefercenê, ser riya Efrînê, ji nû restore kir, hem jî hewşek ji wê mizgeftê re ava kir û di hundirê hewşê de, gora xwe û ya kebaniya xwe Ferîde xanim kola û amade kir û ev nivîs li ser kêla gora xwe nivîsand:



**Dilbirînê bi nalîna welat**

Mihemed Nûrî kurê mella Îbrahîm Colikoglo

***Li ser vê riya dijwar***
***Min jî kire pirr hawar***
***Da ji bo we rojekê***
***Dinya bibe gulbihar***

Û her wiha qewîtiyên xwe li dost û hevalên xwe yên nêzik wek: Dr. Mihemed Cafer, Şêx Mihemed Şêx Smailzade û hin din kirin, ku roja bemire qewîtiyên wî bi cî bînin; yek ji wan wesiyetan, ku wî li Çiyayê Kurdaxê, di Goristana Şêx Henan de veşêrin, da ku her sibeh bayê çiyayê Dêrsimê bi ser de bibare. A din ku darbesta wî di ber qonsolxaneya tirkan re derbas bikin û ya din ku ew kîsê xaka çiyayê Dêrsimê, yê ku her dem di bin palgeha wî de bû, di gorê de jî têxin bin serê wî de. Belê û ji min re gotin; Dema ku rehmetî Nûrî Dêrsimî di sala 1973'an de koça dawî kir, me ew wesiyetên wî, wek ku wî dixwest, bi cîh anîn. Lê mixabin gelek kes bi me re beşdar nebûn, newêrîbûn, ditirsiyan. Di vê gera xwe ya Çiyayê Kurmênc de, min du rojan ser hev serdana gora wî û kebaniya kir û her car min çend kulîlkên nêrgizan danî ser gora wan. Li ser gora wî wiha hatiye nivîsandin:

Li Kurdistana Tirkiyê meha Azar a 1892'an de çêbûye

Li Helebê di roja 22'ê meha Ab a 1973'an de miriye

Li ser gora kebaniya wî Ferîde Xan a ku di rex gora wî de ye, bi tenê ev nivîs hatiye nivîsandin: "Ferîde Dêrsimî, Elî kızı."

Sê zarok ji wan mane, du keç û kurek, keçek li Elmanya ye, yek li Dûbayî ye û kurê wan li Bulgaristanê dimîne.

Yezdanê gewre Dr. Nûrî Dêrsimî û tev têkoşerên kurdan bi dilovaniya xwe şad bike. Bi helkefta ku di roja 22. 08. 2016'an de, 43 sal di ser koçkirina Nûrî Dêrsimî re derbas bû, min ev helbest wek bersiv lê vegerandiye:

***Lehengo Nûrî Dêrsimî***
***Bijî li çiyayên Dêrsimê***
***Jiyana te yî dijwar***
***Va ez bi zêr, dirêsim***
***Bi saya kesên wek te***
***Bihişt bibe mala te***
***Xweş silava bigihîn***
***Wan şehîdên riya te;***
***Seyid Riza û Şêx Seîd***
***Wan sofiyên wek egîd***
***Xwîn rijandin bi merdî***
***Bo azadî bûn mirîd***
***Bo riya teyî dijwar***
***Va em jî dikin hawar***
***Navê te diparêzin***
***Ji bihar ta bi bihar***
***Ji Qamişlo û Efrîn***
***Gul, kulîlka datînin***
***Ser gora te ezbenî***
***Dêrsimê bi bîr tînin***

### Seîd Elî Esxer

# Hostayê muzîka Rojhilat

**Mehdî Caferzade**

Ji bo têgihîştina dewlemendiya mûzîka kurdî divê em berê xwe bidin Zerdeşt û ayîna yarsanê. Kurd mîratdarê şaristaniya medan in, Zerdeşt neviyê medan e û peyrewê yarsan jî kurd in û li Kurdistanê dijîn. Bi zaravên kurdî; feylî (lorî) û kelhorî dipeyivin. Li gor çavkaniyên kevin yên yarsanan mûzîk ji demên gelekî dûr ve bala peyrewên vê ayînê kişandiye. Di kitêba pîroz ya yarsanan Serencam de wisa hatiye gotin: "Dema ku xwedê xwest rihê xwe bipifîne hundirê peykera mirov, rih di qalibê mirov de bi cih nedibû heta ku piştî 40 rojan xwedê ferman da Binyamîn ku ew rihê di laşê mirov de bi cih bike. Binyamîn ji bo rihê re stranek xwend û rih di peykera mirov de rûnişt."

Mûzîk di nava gelê kurd de tevî jiyana wan e û ji wan re tiştekî pîroz e. Di hemû merasimên kurdan de em dikarin rola mûzîkê bibînin. Dema şahiyê, şer, mirin û herwisa îbadetê, kurd bi awayekî mûzîkê bi kar tînin. Ji ber fireçandîbûn û firebawerîbûna gelê kurd em li her devereke kurdnişîn rastî hin ayîn û rîtuelan tên. Di nava hin baweriyên kurdan de mûzîk weke tiştekî pîroz tê dîtin. Li nava kurdên êzdî, yarsan û elewî mûzîk di merasimên dînî û mezhebî de heye.

Mûzîka kurdî navê hemû cûreyên stranbêjî, dengbêjî û kilamgotina gelê kurd e. Bingeha wê ji dengbêjiyê, ji çîrokxwendina melodîk pêk tê. Li gorî vê yekê di nava mûzîka kurdî de sê beşên sereke hene: Çîrokbêjî, stranbêjî û dengbêjî.

Mûzîka kurdî di her parçeyeke Kurdistanê de xwedî hin taybetmendiyên ciyawaz e. Em dikarin enstrumantên cihêreng jî bibînin. Mûzîka kurdî ya Rojhilatê Kurdistanê hertim weke bingehekê ji bo mûzîka Îranê re tê hesibandin. Mûzîka Rojhilatê Kurdistanê gelekî kevn û resen e û hertim ji bo mûzîka îranî re dibe mînak. Mûzîkvanên kurd di nava hemû xelkê Îranê de tên nasîn û bandora wan li ser çand û mûzîka Îranê gelekî zêde ye. Dema qala mûzîka Îranê tê kirin bi her awayî mûzîkvanên kurd tên bîra her kesî. Em dikarin bandora gelek ji mûzîkvanên kurd li ser mûzîka Îranê bibînin; Seîd Elî Esxerê Kurdistanî, Ebasê Kemendî, Koma Kamkaran, Şehram Nazirî, Mezher Xaliqî ... û hwd tenê çend mînak in.

Rola hemû hunermendan di xebata çandî û hunerî de girîng e, lê hin kes cihêkî taybet ji xwe re vedikin. Hin ji wan digihêjin lûtkeya xebatên hunerî û navê xwe di wî warî de mayinde dikin. Dibin mînak û dikevin nava dil û canê xelkê. Navûdengê wan di dîrokê de dimîne û em dikarin bibêjin hertim zindî ne. yek ji wan hunermend û dengbêjan jî Seîd Elî Esxerê Kurdistanî ye. Di nava hunermendên Îranê û Rojhilatê Kurdistanê de weke mînakekî ye ku dinya dengên wisa kêm bi xwe ve dibîne. Gihîştina bi asta dengbêjiya wî ji bo her dengbêjekî weke xewn û xeyalan e.

Li ser jiyana Seîd Elî Esxerê Kurdistanî zêde agahî nînin. Kes nizane gelo ew dengbêjiyê ji kê hîn bûye û şagirdê kê bûye. Heta niha bi tenê Ebasê Kemendî li ser jiyana wî kitêbek nivîsiye.



Li gor zanyariyan ew di sala 1871'ê li Selewat Awata Sineyê ji dayîk bûye, stranbêjê kurd û ji mamosteyên serdema Qacar û serdema destpêka rejîma Pehlewî bû. Hin stran jê bi cih mane ji ber ku ji Sineyê bû loma digotin Kurdistanî.



Seîd Elî Esxer Kurdistanî kurê Seîd Nizamudîn e ku li gorî şecereya wan ew biraziyê Baba Tahirê kurd e û ji aliyê diya wî jî ew digihêjin Şehabedînê Suhrewerdî. Sala 1871'ê li gundê Selewat Awatê nêzî bajarê Sineyê ji dayîk bûye. Mamoste Elî Esxer sala 1905'ê bi Mah Şeref Xanimê re zewiciye û ew ji wê zewacê bûne xwediyê sê kur û du keçan; Seîd Ebdulvehab, Seîd Mesîh, Seîd Elî Eşref, Zehra û Şerafet.

**Zaroktî û ciwanî**

Seîd Nizamedîn bavê Seîd Elî Esxer bi xwe merivekî dîndar û meşhûr bûye, Seîd dişîne bajêr û di mizgefta Darelihsan de wî dispêre mekteba Şêx Evdilmumîn bavê Mihemed Merdoxê Kurdistanî. Seîd li wir fêrî Quranê dibe û bi salan li wir dersa Quranê dixwîne ku piştre di warê xwendina Quranê de bi xwe jî bû mamosteyekî bêhempa. Dengê wî yê zelal dilê gel dagirtibû û ji ber ku merivekî nefsbiçûk bû di nava gel de cihekî taybet ji xwe re vekiribû. Bavê Seîd gelek caran pê re dibêje ku ew stranan nexwîne û Seîd jî wisa bersiva bavê xwe dide: "Nêmetên xwedê ji bo hemû gel re ne û navê ku em vê yekê ji xelkê re ragirin û eger dengbêjî ji bo nêzîkbûna ber bi rastiyê û manewiyetê ve be weke dengê balendeyan mirov nêzî rastiyê dike."




**Naskirina mezinên mûzîkê**

Kurê mezin yê Seîd dibêje: "Bavê min tevî ku qet perwerdehiya mûzîkê nedîtibû lê hemû meqam û desgehên mûzîka îranî baş dinasî. Hemû tiştên ku distiran jî li gorî mûzîka kurdî ya resen bû. Helbestên xwe jî yên gelêrî yan jî ji dîwana şairên weke Molewî ya Kurd, Wefaî yê Mehabadî, Tahir Begê Caf û Baba Tahirê Uryan hildibijartin." Seîd ji bo dengbêjî û staranbêjiya kurdî jî ekolek ava kir. Dema ku 47 salî bû li gel nûnerê Kompaniya Gramafona Polon re peymanek imza kir û li gorî wê peymanê sala 1928'ê 10 stran ji wî hatine tomarkirin. Stranên ku hatine tomarkirin ev in: Meqama Sêgah, Meqama Beyata Tirk, Meqama Hicaz, Meqama Hicaz, Meqama Humayûn, Meqama Deştî, Meqama Şuşterî, Meqama Îsfihan, Strana Yar Xezal, Strana Nabê Nabê, Strana Lence û Lence.

Piştî demekê ew beşdarî civînên mîr û axayan Kurdistanê dibe. Di civatekê de yek ji mezinên Kurdisanê Seîd teşwîq dike ku ew biçe Tehranê û dengê xwe tomar bike. Ew jî wisa dike û tê li Tehranê hin stranên xwe yên kurdî û farisî tomar dike. Derbarê hatina wî ya Tehranê û hînbûna wî ya redîfên mûzîka îranî agahî nînin û tenê hin bîranîn û texmîn derbarê vê yekê hene. Dengî wî yê xembar bala her bihîzerê heta kesên ku zimanê kurdê tê nagihêjin jî ber bi xwe ve dikişîne, Ebas Kemendî kitêbeke biçûk bi navê Seîd Elî Esxerê Kurdistanî derbarê jiyana wî çap kiriye û jiyana wî bi kurtî tê da nivîsiye. Mamoste Seîd Elî Esxer berî sala 1905'ê dizewice sala 1936'ê li cihê jidayîkbûna xwe gundê Selewat Awatê koça dawî dike.

Mihemed Riza Şeceriyan mamosteyê mûzîka klasîk ya Îranê di konserta xwe ya li Silêmaniyê strana "Xemgîn û dil peşîw im" ya Seîd Elî Esxer Kurdistanî îcra kir û got: "Elî Esxer Kurdistanî bê guman mamoste û pêşengê dengbêjiyê ye û em di dengbêjiya xwe de ji ekola wî sûdê werdigirin."

Ji bilî Şeceriyanê hunermendê naskirî yê îranî hunermendên kurd jî gelekî di bin tesîra wî de mane û hewldane meqamên wî îcra bikin.